Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 115
22'ê Tîrmeha 2009
Buha: 150 Tûmen

agirî

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

**Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq birêveçûna gireva giştî li Rojhilatê Kurdistanê spasnameyek pêşkêşî xelkê Kurdistanê kir**



### Di 20'mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî de

# SOZA BERXWEDAN Û BERDEWAMIYÊ HATE DUBAREKIRIN




**Peyama Deftera Siyasî a PDKÎ Bi hilkevta 20'mîn salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî**



4-6

**Hevpeyvîna Taybet ya Agirî bi Nesrîn Qasimlo re**



R. 3- Paşkoya taybet

**Karîzmabûna Şehîd Dr. Qasimlo**



11-12

## Spasnameya Deftera Siyasî ya PDKÎ

# Di Derheq Birêveçûna Serkevtiyane Ya 20’mîn Salvegera Terorkirina Dr. Qasimloyê Nemir De

**Xelkê xebatkar û azadîxwaz yê Kurdistanê**
**Endam û alîgirên xebatkar ên PDKÎ**

Di roja 22’ê Pûşpera îsal (13’ê Tîrmeha 2009) jî, serbarê gef û zext û zora bêrade ya hêz û organên kirêgirtî ên Komara Îslamî, bersivdana we bi bangewaza desteya rêveber ya 20 saliya şehîdkirina rêberê mezin yê gel, Dr. Qasimloyê nemir, nîşana rêz û hurmetgirtina we ji bo xebat û têkoşîna vî rêberê mezin û di heman demê de jî dijberî û xuyakirina bêzariyê ji terorîzma Komara Îslamî a Îranê ye.

Yekîtiya bêmînak ya we bi girêdana dukan û bazaran, hatin bo ser rê û şeqaman bi cil û bergên kurdî, mifahwergirtin ji rengê şîn yê esmanî, nehatina gundiyên delal û xweştivî di wê rojê de ji bo bajaran, hildana ala sê reng ya Kurdistanê, temirandina çirayên malan bo dema 3 deqîqeyan û aqibet bi kirina navê ew şeqam û qadên ku bi navê Dr. Qasimloyê rêber hatine binavkirin, cihê rêz, pêzanîn û qedirgirtina PDKÎ ye û di heman demê de nîşana biîsrarbûna we ji piştevanîkirin ji vê partiya xebatkar û armancên wê ye.

Yekgirtina we di wê liv û tevgera sivîl û jîrane de, hêviya pêşerojeke geş û ron ji bo gelê kurd û peyameke qurs û qahîm e ji bo dujmin û neyarên gelê me ku bêguman bandorên vê tevgerê di pêşerojê de dê zêdetir reng vede û derkeve holê.

Serkevtina berçav a gelê me di vê panoramayê de, di yekîtî û netirsî û biwêriya kit kite we xebatkarên rêya azadiyê de bûye û divêt em vê yekîtiyê weke gilênika çavan biparêzin, ji ber ku di pêşerojê de jî remza her serkevtineke me di yekîtî û yekrêziyê de ye.

Em di Partiya Demokrat ya Kurdistanê de li ser vê baweriyê ne ku dikare û dibe serbarê hebûna hizrek cuda û pirrengî di civaka Kurdistanê de, em bi hev re di rêya pêkanîna civakek azad û bextiyar de hevkar û hevxebat bin û her ew alîkarî û hevgirtine jî dikare bibe remza serkevtina me.

Li Herêma Kurdistanê jî, serbarê civîna giştî di binkeya Deftera Siyasî de bi beşdariya kadro û pêşmerge û malbatên partiyê, nûnerên aliyên siyasî ên hemû parên Kurdistanê û komek ji kesayetiyên siyasî û rewşenbîrên Kurdistanê, di van rê û resman de rêz ji xebat û têkoşîna Qasimloyê nemir girtin.

Her wiha di binkeya Navenda 3 ya Kurdistanê de, li bajarên Herêma Kurdistanê: Hewlêr, Silêmanî û Kelarê ev rêberê leheng û navdar yê gelê me hate bibîranîn û çendîn kesayetiyên siyasî û akademîk li ser rola Dr. Qasimlo di xebata rizgarîxwaziya kurd de axivîn û xebata wî bilind nirxandin.

Li derveyî welat jî çendîn civîn û semînar bi beşdariya Sekreterê Giştî yê partiyê û kesayetiyên siyasî ên biyanî, Îranî û kurd hatin lidarxistin, di bas û mijarên xwe de bal kişandin ser rola siyasî û dîplomasî ya Dr. Qasimlo û hewlên navnetewî ên vî rêberê aştîxwaz, carek din daxwaz ji dewleta Otrîşê û kom û komeleyên mirovhez kirin dosya vê terorê bixin berbas û rêberên rêjîma Komara Îslamî weke biryarderên vê tawan û cinayetê, bi dadgeha navneteweyî binasînin û bigihijînin cezayê kiryarên wan ên cinayetkarane.

Deftera Siyasî a PDKÎ hezaran silav û spasê dişîne bo wan kesên ku heta bi kar û kiryareke biçûk di bi serkevtin gihîjandina bangewaza Desteya Rêveber ya Bîstemîn Salroja Terorkirina Rêberê Şehîd Dr. Qasimlo de alîkar bûn û pîrozbahiya vê serkevtinê ji hemû wan kesan dike ku bi hesteke paqij û netirsiyeke bêmînak hatin meydanê û ev serkevtin tomar kirin û her wiha spasiya wan kes û aliyan dike ku di kom bûn û civînên bîstemîn salvegera Dr. Qasimloyê Şehîd de beşdarî kirin.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**23.04.1388**
**14.07.2009**

# Konferansek Li Ser 20mîn Salvegera Şehîdên Viyenê Hate Lidarxistin

Di bin navê “berpirsiyariya Otrîşê-bîst sal bêdengî bes e”, roja duşem, 6ê Tîrmeha 2009an, li Hola Albert Şwaytzer Haws a bajarê Viyenê, konferansa bîstemîn salvegera şehîdbûna rêberê mezin Dr. Qasimlo û hevalên wî, ji aliyê Komîteya PDKÎ ji seet 16ê êvarê dest pê kir. Di destpêkê de Elîşan Îlkay, rêveberê programê piştî ku xêrhatina mêvanan kir, deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji bîranînê ragihand û her wiha beşên cuda ên bernameyê îlan kir.

Piştre Dr. Hans Yuxayîm Fûks, Serokê Komeleya Otrîşî-Kurdî ji bo kar û barê zanistî û kultûrî, bi axavtinekê konferans vekir. Dûre Nesrîn Qasimlo axavtinek pêşkêşî beşdaran kir. Nesrîn Qasimlo tevî rêzgirtin ji serederîkirina hukûmeta wê demê ya Otrîşê, daxwaz kir ku dewleta niha a Otrîşê derbarê dosya şehîdên Viyenê gavan bavêje.

Piştî axavtina balkêş a Nesrîn Qasimlo, rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ, serbarê mehkûm û şermezarkirina helwesta siyasî ya dewlet û dezgeha dad a Otrîşê, daxwaza lêkolîn li ser terora Viyenê ragihand. Wî diyar kir, dewleta Otrîşê divêt kesên ku bûne sedema azadkirina terorîstan bixe ber lêpirsînê û dewleta Otrîşê bi fermî lêborînê ji gelê Kurd û PDKÎ bixwaze. Deqa gotara Mistefa Hicrî di vê hejmara Agirî de bixwînin.

Dr. Ebulhesen Benîsedr, Çalakê siyasî ku li ser vexwendina Komîteya Otrîşê ya PDKÎ ji Parîsê ve ji bo beşdarîkirin di wê rê û resmê dehatibû Viyenê, gotarek bi navê “Tekwîn terorê û rejîma serkut û tundûtûjiyê”, pêşkêş kir. Wî tevî şermezarkirina terora Viyanê û hemû çalakiyên terorîstî yên Komara Îslamî a Îranê, diyar kir ku rejîma Îranê îxanet bi baweriya aştîxwaziya Dr. Qasimlo kir. Benîsedr got: “Komara Îslamî a Îranê bi wê kiryarên qirêj û biyom naveroka dijî demokratîk û dijî azadî û xwe ji bo cîhanê selimand”.

Di beşeke din a karê konferansê de Dr. Pîter Pîltz, endamê Parlemana Otrîşê, li ser zanyariyên herî nû derheqê dosya şehîdên Viyenê axivî. Wî bal kişande ser rola Ehmedînijad, Serok Komarê Îranê di wê terorê de û esehî û piştrastbûna xwe derbarê rola wî di wê kiryara terorîstî de da zanîn. Wî li ser vê yekê tekez kir ku divêt hukûmeta Otrîşê helwesteke jêhatî derheq wan belgenamane ji xwe nîşan bide û bi hêsanî lê derbaz nabe.



**Di konferansa Viyenê de li ser destpêbûna lêpirsîn derheq dosya terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî tekez hate kirin**

Dr. Pîter Pîltz diyar kir ku niha bi hebûna aliyê kêm 4 şahidan, çî din nabe dosyaya Viyenê bihê pişguhxistin û divêt dozgeriya Viyenê li ser destbikarbûna wê dosyayê gavên pêwîst bavêje.

Piştre nûnerên çendîn partiyên siyasî û rêxistinan û herwiha kesayetiyên siyasî û hiqûqî axivîn û bûyera terorîstî ya Viyenê nirxandin û panelek jî hate pêşkêşkirin. Rapora berfireh ya konferansê li ser malpera me bixwînin...

## Gotara Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ

# Di Konferansa 20'mîn salvegera bibîranîna terora Viyenê deli Otrîşê

**Cenabê serok!**
**Beşdrên birêz!**

**Dostên hêja!**

Sekreterê Giştî yê wê demê ê PDKÎ Dr. Ebdulrehman Qasimlo û Ebdula Qadirî Azer, endamê Komîteya Navendî û berpirsê nûneriya partiyê li derveyî welat û Dr. Fazil Resûl li 13'ê tîrmeha 1989'an, vir li bajarê we Viyen'ê bi destê terorîstên rejîma Komara Îslamî a Îranê li ser maseya gotûbêjê hatin terorkirin. Îro bi hilkevta bîstemîn salvegera wê terora nemirovane, em hevxebat, dost û hogirên wan mirovên demokrat û aştîxwaz li vir civiyane heta van xebatkarên rêya azadiyê, nemaze Sekreterê wê demê yê PDKÎ bibîr bînin û rêz û huremtê ji wan bigirin û ji aliyekî din ve jî ev kiryara hov û biyom bo careke din mehkûm û şermezar bikin.

**Gelî hevalan!**

Terorkirina Dr. Qasimlo ne yekemîn kiryara terorîstî a Komara Îslamî bû, ne ya dawiyê jî bû, belku berî vê terorê û li pey vê de jî sedan kes ji xebatkar û kesayetiyên naskirî yên Opozîsyona Îranê û heta endamên sade ên wan partiyane li hundir û li welatên dûr û nêzîk, nemaze welatên Ewropayê hatine terorkirin, ku hemû ziyan û xesarên mezin in li xebatkarên rêya azadiya welatê dîktatorlêdayî yê Îranê. Her çiqas destê tawana rejîmê di hemû wan tawanane de ron û eşkere ye, lê heke em wisa bihesibînin ku belge û dokumentên dadgehpesend ji bo piştraskirina rêveberên beşek ji wan sûç û tawanane ji aliyê rejîmê ve di dest de nebin, aliyê kêm bikujên terora Viyenê piştî qetlê ji aliyê Polîsê wî welatî ve hatin girtin, lê mixabin bi biryareke siyasî a hukûmeta wê demê ya Otrîşê bi îskort ji bo balafirxaneyê hatin şandin heta bi saxî û silametî vegerin Tehranê û ji aliyê karbidestên payebilind yên Îranê ve bi destxweşîkirin bona rêvebirina vê memûriyeta giring pêşwazî ji wan bê kirin û bên xelatkirin.

Bi dîtina me ew tawana dewleta Awusturyayê ji tawana terorê girantir û ne jêhatîtir e, çunkî eger di rejîma paşverû ya Komara Îslamî de ev cure kiryar û kuştinên bikom û bixof ên azadîxwazên Îranê bi her awayekê û li her cihekê jê re çê bibe û dest bide, çavnihêkirî ye, lê ji dewleteke Ewropî weke Otrîşê ku ceribîna tal ya desthilata Hîtler û kuştin û qirkirina azadîxwazên weletê we bi destê hukûmeta Nazî di ber dest de ye û îdeaeya demokrasî, edalet û dijberî bi terorê re dike, neçavnihêrkirî bû. Ev kiryar û karê Otrîşê sûçek bû li dijî gelê kurd, PDKÎ û hemû azadîxwazên Îranê.

Bêguman ew lekeya reş li ser Otrîşê paqij nabe, heta wê dema ku lêpirsîna adîlane li wan berpirsên Otrîşî neke ku bikujên terora Viyenê serbest berdan û ji bo Tehranê şandin, yan dewleta Otrîşê lêborînê li gelê kurd û PDKÎ nexwaze. Mixabin niha jî ku bi sedema stûbadana Komara Îslamî li biryarên navneteveyî, 3 biryarnameyên cezayan ji aliyê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ve bi ser vê rejîmê de hatiye sepandin, welatê Otrîşê yek ji welatên çeleng ên Ewropayê ye ku bi Îranê re bazirganiyê dike û bi sedan şîrketên wî welatî di Îranê de çalak in, ji bilî wan, bas ji lihevhatinek 22 milyar dolarî di navbera şîrketeke neftê ya Awusturyayî û Îranê di holê de ye. Welatên din ên Ewropayî, bi taybet Almanya jî di rêza serve ya wan welatan de ye ku lihevhatinên bazirganî ên zaf bi wê hukûmetê re heye û Almanya heta ji firotina ew alavên teknîkî bi wî welatî ku ji bo qirkirina azadbîrên Îranî mifah ji wan tê standin, dirêxî nekiriye.

Komara Îslamiyek ku berevajî biryarên Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî bi lezgînî li çêkirina yekemîn bombeya Etomî a xwe nêzîk dibe, astenga herî mezin û xurt li ser rêya aştiya navbera Filistîn û Îsraîlê û li ber çavê dunyayê haşeyê ji bûyera Hulokastê dike, bi eşkere bas li ji holêrakirina Îsraîlê dike. Bi Pêkanîn û xurtkirina taqim û grûpên binajoxwaz di nav kar û barên welatên Rojhilata Navîn de destwerdanê dike û bi vî awayî yê bûye yek ji sedemên sereke ên alozî, fitne û bêewlehî di wê hêrêmê de. Di hundirê welat de jî serkut û qirkirin û zexta wê rejîmê li ser gelên mafxwaz, Jinan û kêmaniyên olî roj bi rojê tundtir dibe. Kedkar û mamostayên xwendingehan tenê li ser daxwazkirina miaşê paşdemayî yê çendîn mehî dixin girtîgehan û enflosyona nêzîk bi 30%ê û nexweşiyên civakî ên cur bi cur jiyan ji bo Îraniyan nehêlaye.

Welatek dewlemend bi 70 milyon nifûsê ve, di bin rênîşanî û fermanên olî ên kesekê de birêve diçe, dahata wî welatî ji bo grûpên kirêgirtî ên Weliyê Feqîh û hêzên serkutker û Komên terorîst û fondamêntal tê serfkirin û parek zaf ji xelkê wê di bin hêla xizaniyê de dijîn ku ji bo têrkirina zikê birsî ê zarokên xwe bo heyameke demkî, gurçîlk û keçên xwe difiroşin.

Eger ew rejîme di rewşeke taybetî de û bi sedema hinek fakterên navxweyî û derveyî hate ser desthilatê, em dikarin yek ji sedemên cihgirbûn û xurtbûna wê,



ew alîkariyên berfireh ên bazirganî û teknîkî bizanin ku ji destpêkê ve heta niha ji aliyê welatên Rojava ve bi wê rejîmê hatiye kirin. Ji bo rêxistinên demokrat û wekhevxwaz ên Rojhilatê û yek ji wan kurdan û PDKÎ hertim ev pirsa di holê de ye ku çawa ew hukûmetên ku Jest û Lafa azadî, demokrasî û mafê mirovan lê didin, li hevkarîkirin û bihêzkirina sîstemên dîktator ên deverê û li serveyî hemûyan Komara Îslamî a Îranê bi hev re di kêbirkêyê de ne? Gelo durûşmên wan derheq piştgirîkirin ji mafê mirovan, demokrasî û azadiyê li hember kirinên wan di herêma me de nateba ninin?

**Gelî rêzdaran!**

Em we erxayîn dikin, heke ji destpêkê ve Komara Îslamî hest bi vê yekê kiriba ku ji ber kiryarên xwe ên dijî mirovî ve dê bi berengariya micid a Rojava berbirû bibe, dê siyasetên xwe biguherîban, her wek çawa piştî terorkirina sekreterê din yê PDKÎ, Dr. Sadiq Şerefkendî û hevalên wî di 17'ê Îlona 1992'ê de li Berlînê, demekê bi biryara dadgeheke vî welatî bikuj hatin girtin û cezayên xwe yên qanûnî wergirtin û rayedarên herî payebilind ên rejîma Îranê bi pilandarêjiya wan qetlan hatin navbirin, Komara Îslamî dest ji terorkirina neyarên xwe li Ewropayê berda. Me bi şarezayiyeke tewaw ku li ser îdeolojiya rejîmê û azmûna 30 sal desthilatdariya wê heye, me jê ve ye her çiqas niha jî dereng bûye, lê ji bo ku ji wê jî derengtir nebe, pêwîst e welatên Ewropa û Dewletên Yekbûyî ên Amerîka bi alîkariya RNY'ê û hevalbendên din ên xwe di cîhanê de, xetera Komara Îslamî bi kêm negirin û bi awayekî hevgirtî û micidtir, di rêya biçokdeanîna wê rejîmê gavan bavêjin.

Bitaybet ku li darxistina şanogeriya vê dawiyê a hilbijartina Serok Komariyê di Îranê de, tu cihê dudiliyê nehêla ku destan bidin çokên xwe û hêvîdarbûn bi çaksazî û refoman di vê rejîmê de tu encamek nabe.

Wê yekê jî zêde bikim ku siyaseta gotûbêj û serederîkirina bi nermî a îdareya nû a Amerîka jî nagihîje tu encamekê, bilî vê ku derfet û firsendeke baştir ji bo Komara Îslamî dest dikeve bona pêşdexistina bernameya xwe ya navikî û çeng avêtinan û xurkirinê li welatên Rojhilata Navîn, bi taybet li Îraq û Felestînê. Di vê derbarê de nêrînên min ku di gotarekê de hatiye berhevkirin, dê pêşkêşî we bê kirin.

Di dawiyê de, hewce ye qala wê rastiyê ji bikim ku gelê kurd û PDKÎ bi hevkariya rêxistinên siyasî ên din yên pêşketinxwaz ên Îranî û hemû neteweyên perawêzxistî û zilmjêkirî ên vî welatî, herwiha bi piştgirêdan bi hişyariya hemû çîn û texên maf binpêkirî ên Îranê, xebata xwe li dijî Komara Îslamî bi armanca pêkanîna guhertinên bingehîn di wê rejîmê de bi ked û gorîdana ji wê zêdetir ku me di wê rêyê de daye, dê pêşve bibin. Lê rastiyeke haşahelnegir e ku hevkarî û piştevaniya welatên demokrat dikare rêya gihîştin bi armancên me kin û kurttir bike, radeya gorîdan, terorkirina Dr. Qasimloyan û kuştin, zîndanîkirin û îşkenceya mafxwazên hundir dabezîne û ji aliykî din ve, teror, kuştin û wêran li Îsraîl, Filistîn û welatên din ên herêmê bi dawî bîne û xeterên bidestxistina wê rejîmê bi çeka navikî ku xeter û metirsiya aliyê kêm ji bo beşeke zaf li cîhanê bitaybetî Amerîka û Ewropayê ye, xilas bike Di dawiyê de, ez dê axavtina xwe bi gotinek Dr. Qasimloyê nemir xilas bikim ku digot: "Xelata herî baş ji bo şahîdan, domandina rêya wan e". Ez we sipas dikim ku di bîranîna bîst saliya xebatkarê rêya azadî û demokrasiyê Dr. Qasimlo Sekreterê Giştî yê PDKÎ de beşdarî kir û guhdariya axavtina min kir.

# Peyama Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq 20'mîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî



## Peyama polîtbîroya PDKÎ ji aliyê Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî di rê û resma taybet a 20 saliya bibîranîna Dr. Qasimlo û hevalên wî li binkeya eslî ya PDKÎ li koyê hate pêşkêşkirin

**Hevwelatiyên rêzdar!**
**Xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê!**

**Mêvanên delal!**
**Hevalên hêja!**

Îro 22'ê Pûşpera sala 1388'an a Rojî (13'ê Tîrmeha 2009), 20 sal bi ser cinayetek samnak û dilşewat û pîlana terorîstî ya rêberên rejîma Komara Îslamî derheqê gelê mafxwaz yê Kurd û PDKÎ derbaz dibe. 20 salan berî niha di vê rojê de, di komployeke terorîstî û nemirovane de dîplomat terorîstên Komara Îslamî bi biryara rêberên mirovkuj ên rejîmê bi navê gotûbêja rûyekî ji bo çareserkirina aştîxwazane a pirsa kurd ku ji bo Ewropayê hatibûn şandin, li bajarê Viyena, paytexta Otrîşê, rêberê zana û navdar yê Kurd Dr. Ebdulrehman Qasimlo Sekreterê Giştî yê PDKÎ û Ebdula Qadirî Azer endamê Komîteya Navendî û nûnerê partiyê li derveyî welat û Dr. Fazil Resûl, rewşenbîr û mamostayê kurd li zanîngeha Viyenê û dostê PDKÎ teror kirim. Digel belavbûna nûçeyê şehîdkirina Dr. Qasimloyê rêber û hevalên wî, dilê hemû însaneke/î mirovhez û azadîxwaz li seranserî cîhanê hejand û kerb û bêzarî ji bikujên vê koma xebatkarên rêya azadiyê dan xuyakirin û bi gelê Kurd û PDKÎ û malbata serbilind a wan re hevderdî û hevxemî nîşan dan û daxwaz ji dewleta Awustryayê kirin, tawanbarên vê cinayeta mezin bigirin û radestî dezgeha dadê bikin û bigehînin cezayê encamdana wê tawanê. Her çiqas nasnameya terorîstan ji bo Partiya Demokrat ya Kurdistanê û dewleta Otrîşê bi tevahî ron û eşkere û navê wan jî diyar bû, belge û şûnwarên tawana wan li cih û derdora cinayetê bicî mabû û Polîsê wî welatî jî ji çawaniya birêvebirina wê kiryara terorîstî haydar bû, mixabin dewleta Otrîşê berevajî ew çavnihêriya ku jê dihat kirin, bi awayekî fermî ew terorîst şandin Îranê û xwîna bi neheq rijandî a wî rêberê mezin û hevalên wî bû goriyê vêc û berjewendiyên aborî ên wan bi rejîma Komara Îslamî a Îranê re.

**Xûşk û birayên hêja!**

Nîşanegirtina vî rêberê mezin û şehîdkirina wî ji aliyê rêberên rejîma Komara Îslamî ya Îranê û grûpên terorîstî ve tiştek nişkêve nebû, rêberên wê rêjîma kevneperest û paşverû her piştî serkevti Şoreşa berfireh a Gelên Îranê û jirêderxistina rêbaza wê şoreşê û eşkerekirin û şermezarkirina siyasetên wan ji aliyê Dr. Qasimlo ve tengav bûn. Lewra ji derfetekê digeriyan heta kerb û kula xwe pê birêjin û bixin telik û dawê, di tu yek ji wan hewildanên xwe de negihîştin wê armanca qirêj, heta aqibet di şekleke din de û di welateke Ewropayê de bi navê gotûbêj û gihîştin bi aştiyê, pîlan û komplo ji bo zana û pêxemberê aştiyê dûr ji hemû qanûn û biryareke navneteweyî şehîd kir û rûpeleke reş a din xistin ser karnameya tejî rûreşî û riswa û şermezarî ya xwe. Terorkirina vî rêberê mezin ji bo PDKÎ û tevgera azadîxwazane a Îran û herêmê ziyan û xesareke mezin bû, rêberên Komara Îslamî a Îranê, haydarê rol û nexşê bi bandor yê Dr. Qasimlo û pêgeha xelkî û helwesta siyasî û dîplomatîk ya wî bûn. Ew kesek bû ku li gora bernameyeke siyasî û organîzasyoneke çeleng li dijî rêjîma Komara Îslamî ya Îranê xebat dikir û di asta tevgera azadîxwazane a Îranê de jî bi bandor bû, her ew lêzanîn û jêhatîbûne jî aramî ji rêjîmê birrî û bi wê kompoya nemirovane pirr bêrehmane şehîd kirin.

Dr. Qasimlo ku ji malbateke navdar û

xwedî çanda siyasî de elimîbû, perwerde bûbû, her di temenê zarokatiyê de, xebata siyasî û şoreşvanî li dijî zilm û zordarî û dîktatoriyê hilbijart û di refên PDKÎ de heta bêhna dawî ya jiyana tejî serwerî û rûmet ya xwe xizmet bi netewe û nîştimana xwe kir. Dr. Qasimlo piştî hiloşîna Komara Kurdistanê yek ji xebatkarên PDKÎ bû ku bi şirovekirin û dahûrandineke siyasî xebat domand û hewl û cehda vejandina rêxistinên PDKÎ da. Wî yek ji xalên jar û lawaz ên partiyê di nebûna serxwebûna siyasî û girêdayîbûn bi hinek aliyên din ve didît, her ewa bû di yekemîn gav de bi komek ji endamên xebatkar yên partiyê re, di sala 1334'an a Rojî (1955) serxwebûna biryardana partiyê ragihand. Di warê rêxistinî de, PDKÎ ji girêdayîbûn bi rêxistina Partiya Tûde a Îranê cuda kir û heta salên 1349'ê Rojî (1970) ku dewranek tejî evraz û nişîv bû, ev xebate bi çendîn qonaxan re derbaz kir. Di salên 1350 (1971)'an de jî, Dr. Qasimlo bi mifahwergirtin ji wê rewşa siyasî a baş ku di Başûrê Kurdistanê de di navbera serkirdayetiya şoreşa Kurd bi dewleta navendî a wê demê ya Îraqê re pêk hat, fesleke nû di xebata siyasî a PDKÎ de dest pê kir. Di vê qonaxê de ku bi serdemeke zêrîn di dîroka siyasî a PDKÎ de tê hesibandin, ji aliyekî ve pêkhateya partiyê sax kir û organîzasyonên partiyê vejandin, ji aliyekî din ve jî bi awayekî karnasane bi lidarxistina konferans û kongreyan, bername û pêrewa hundirîn ji partiyê re danî û careke din endamên PDKÎ li dora siyasetên partiyên de civand û li ser hêla serxwebûna siyasî a partiyê tekez dikir. Bi destnîşankirina komek rê û cihên siyasî û rêxistinî rêbazek ji bo PDKÎ diyar kir ku heta niha jî di xebata keç û xortên xebatkar ên Kurd de cihê şanazî û rûmetê ye û ji ber pêşkevtîbûna wê rêbazê ye ku PDKÎ, resaleta siyasî û neteweyî û demokratîk a xwe parastiye û berdewam di geşekirin û pêşdeçûnê de ye. Diyarîkirina Sosyalîzma Demokratîk weke armanca pêşeroja partiyê û desnîşankirina taybetmendiyên Kadroyekî/e baş yê/ya partiyê, Sîmaya Demokrat û cihgirkirina pirensîpên demokratîk di PDKÎ de û giringîdan bi demokrasiyê, ew bi remz û nîşana zindîmana PDKÎ dizanî, her li ser wê baweriya kûr bi azadiya gotin û raderbirrînê û geşandin û cihgirkirina demokrasî di PDKÎ de bû ku kongreyên partiyê di dem û wextê xwe de digirt. Di rêvebirinê de Dr. Qasimlo bi awayekî modern û pêşverû partî rêve dibir, wî baweriyekî kûr bi organîzsayona çeleng û zindî di birêvebirina biryaran de hebû. Li ser azîn, usûla rênîşanî, qenaetpêanînê tekez dikir û serkevtina berpirsên PDKÎ di afirandin û xulqandinê de didît.

Dr. Qasimloyê rêber, serbarê vê yekê



ku rêberiya tevgera netewî demokratîk ya gelê kurd li Îranê dikir û berevanî ji xebata gelên Îranê û prosesa demokrasîxwaziya welatê me dikir, her di wê demê de jî, hevxebatîkirina netewî û nîştimanî bi partiyên siyasî ên parçeyên din yên Kurdistanê re weke erkek neteweyî yê xwe û partiya xwe dizanî. Wî bi şîrovekirina siyasî li hember bûyerên siyasî helwêst digirt û mafê diyarîkirina çarenivîsê bi mafeke bê vir û wir yê kurd dizanî, di heman demê de li ser vê yekê tekez dikir ku divê hêzên siyasî ên kurd di têkiliyên navneteweyî de bi zimanê hevbeş xebat û dîplomasiya xwe rê bixin. Her li ser wê pêwîstiyê jî bû ku Dr. Qasimlo xebat dikir pirsa kurd navneteweyî bike û bala raya giştî a gelên aştîxwaz ên cîhanê ber bi aliyê xebata kurd rakêşe. Siyaseta destwerdana mirovdostane ya kom û komeleyên navneteweyî, di wan welatan de ku mafên kurd bûne goriyê rêjîmên dîktator, bike parek ji dîpomasiya xwe. Pêwendiyên dîplomatîk ên Dr. Qasimlo bi navendên siyasî û fikrî ên Ewropa û dostînî digel kesayetiyên siyasî, rojnamevan û Rojhilatnasan bû sedema lênihêrîneke diyarker ji pirsa kurd û tevgera rizgarîxwaziya Kurdistanê. Hewl û cehdên dîplomasî ên Dr. Qasimlo bi Enternasyonala Sosyalîst û Partiyên Sosyalîst û Demokrat ên Ewropî re bû ku Konferansa Parîsê di meha Çiriya Pêşîn a sala 1989'an li ser pirsa kurd, piştî komkujiya Helebceyê pêk hat û bû bi bingeha piştgiriya siyasî ji doza kurd di asta navneteweyî de.

Dr. Qasimlo di têkiliyên siyasî û dîplomatîk ên xwe di asta navneteweyî û herêmî de li ser parastina berjewendiyên netewî ên kurd û siyaseta destwerdan di nav ker û barên hevdu û rêzlêgirtina hember û parastina hêla serxwebûna siyasî de rêk dixist, di wan pêwendiyan de jî pirr caran berjewendiyên PDKÎ ji bo xizmet bi armancên giştî ên kurd terxan kir û ev polîtîke jî belgeyeke haşahilnegir di têkiliyên siyasî ên partiyê de ye. Piştî hiloşîna rejîma Bees a Îraqê jî, Dr. Mehmûd Osman, kesayetiyê siyasî û naskirî yê kurd ev rastiya dîrokî bas kir û pêwendiyên siyasî ên PDKÎ weke rûmet û şanazî û ceribîneke serkevtî û nimûneya dîplomasiya partiyên kurdî binav kir, ew serwerî jî vedigere ji bo rola jîrane a Dr. Qasimlo wekî mêmarê wê dîplomasiyê û peywendiyên siyasî ên PDKÎ.

Dr. Qasimlo di warê zanistî û fikrî di asta navneteweyî de bîrmendekî zana û xwedî raman û navdar bû, di warê zanista aborî û siyasî, civakî û bîrdoz û mektebên fikrî de berdewam di analîz û şîroveyan de bû.

Dr. Qasimlo yek ji bîrmendên pêşeng bû ku li ser Sosyalîzma modela Yekîtiya Soviyeta wê demê rexne digirt û di wê baweriyê de bû ku nebûna demokrasî û dadperweriyê di wê modelê de ê bûye sedema astenga geşekirin û pêşketina civakên wan. Ew bawer bû derfet bi civatên xelkê bê dayîn, bi beşdariya xwe ya çelengane di diyarîkirina çarenivîsa xwe de serbixwe bin, ev nêrîna fikrî jî bû ku li Bihara Pirag'ê di sala 1968'an a Zayînî de li hember siyaseta destwerdana Yekîtiya Soviyeta wê demê ji welatê Çevoslovakiya û di serdemê Dobçîk de helwesta dîrokî û siyasî ya xwe girt û ew helwest bû destpêka nav derkirina vî ramanwerê jêhatî di asta navneteweyî de. Wî bi anîne berbasa Sosyalîzma Demokratîk û piştgirîkirin ji Gilasnost û Prostuvîka li Yekîtiya Soviyetê û gellek mijar û basên giring ên hizrî û îdeolojîk ew rastiye selimand ku demokrasî dikare dadperweriyê jî dabîn bike û civatên xelkê ji çewisandin û newekheviyê rizgar bike. Qasimloyê zana bawereke kûr bi mafê jinê hebû, wî gellek bi azad dizanî û civakek bi pêşverû û bextewer dizanî ku jin di rêvebirina welat de beşdar û roleke berçav hebin û mafên wan bê ewle û desteberkirin. Herwiha girîngî dida nifşa ciwan ku sermayê pêşeroja gelê me ne û hemû hewl û cehda wî ji bo elimandina

ciwanên Kurdistanê û nasyarkirina wan bi mafên mirovî, siyasî û neteweyî ên wan bû. Ev rêberê navdar, ji bo nîşandan rûçikek pêşkevtî ji xebata neteweya Kurd û çand, kultûr û dîroka kurdan, bi piraniya navendên wêjeyî û çandî ên derve û kom û komeleyên mirovhez pêwendiyeke berfireh çê kir, her ewa jî bû ku nasnavê sefîrê çeleng û dîplomatê xwedî şiyan bi vî rêberê zana re hate bexşîn û ji aliyê komek ji parêzerên mafên mirovan ve ji bo wergirtina Xelata Nobel a Aştiyê a sala 1990'an hate berendamkirin.

**Xûşk û birayên hêja!**

Li ser Dr. Qasimloyê navdar û xebat û têkoşîn û asta bilind a zanistî û siyasî û exlaqê bilind yê şoreşgerane û mirovdostane yê wî, em her çiqas qise bikin, binivîsin û civîn û semînaran lidar bixin, hêj em nikarin di asta vî mêrê mezin de, nirx û bihayên siyasî û neteweyî û mirovî ên wî bînin ziman û balê bikşînin ser hemû aliyên jiyan û xebata vî rêberê têkoşer bi giştî. Qasimloyê rêber bi çiyayê serkêş û bi heybet yê xebatê hilkişiya û xwe gihîjande elindê û bi rûmet û şanazî ve ew soz û peymana ku bi neteweya xwe û bi avakerê partiya xwe Pêşewayê nemir Qazî Mihemed û hemû şehîdên rêya azadî û rizgariya Kurdistanê dabû, birêve bir û erkê domandina rêbaza tejî rûmeta xwe ji bo şagirt û rêvîngên xwe cî hişt.

Her weke me bas kir, yek ji hevalên Dr. Qasimlo ku di vê pîlana terorîstî de şehîd bû, Kek **Ebdula Qadirî Azer** endamê Komîteya Navendî û nûnerê PDKÎ li derveyî welêt bû, kekê Ebdula yek ji Kadroyên pêşkevtî yên partiyê bû ku bi jêhatîbûna xwe ve, pileyên partiyê heta asta endamê Komîteya Navendî birrî û ji aliyê rêberiya PDKÎ ve berpirsiyariya bîroya derveyî welat bi wî hate sipartin û pirr zû karî xwe pêş bixe û bielimîne û di warê siyasî û dîplomasî de xwe nîşan bide û digel kom û komeleyên siyasî pêwendiyeke berçav ji bo partiya me pêk bîne û xizmetê bi armancên PDKÎ û gelê xwe bike.

Kesayetiyekî din ku di vê karesatê de hate şehîdkirin û bû goriyê polîtîkên terorîstî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê, Dr. Fazil Resûl bû ku dîrokek dûr û dirêj li dostînî û hevkarî digel hêzên siyasî yên Kurdistanê hebû. Mixabin ew jî di wê kiryara terorîstî de hate şehîdkirin û canê xwe di rêya aştiyê de bexşî.

**Hevalên hêja!**

Meha Pûşperê gellek bîranînên tal ji bo neteweya Kurd û PDKÎ aniye. Di vê heyvê de û di roja 24'ê Pûşpera sala 1378'an a Rojî (15'ê Tîrmeha 1999), Kekê **Selam Ezîzî**, ednamê Polîtbîroya partiya me û yek ji xebatkarên wefadar ên rêbaza Qasimloyê rêber, bi nexweşiyeke nişkêve jiyana xwe ji dest da û tevlî rêza karwanê Şehîdên neteweya me bû.

Kekê Selam Ezîzî piştî Şoreşa Gelên Îranê di sala 1979'an de, hate refa xebatkarên PDKÎ û bi hesteke bilind û bîr û baweriyeke kûr û hogiriyeke zaf bi Dr. Qasimloyê rêber, xebat û têkoşîna xwe dest pê kir û di partiyê de jêhatîbûna xwe nîşan da û pileyên rêxistinî heta asta Deftera Siyasî derbaz kir. Kekê Selam Ezîzî'yê nemir yek ji wan xebatkarên mezin ên PDKÎ bû ku di riftar û kiryarên xwe de demokratekî rastîn bû, di parastina azîn û usûl û pirensîpên siyasî û rêxistinî de bi piratîkê nîşan da hevalekî wefadar yê Dr. Qasimloyê rêber e û li dijî her cure hewildana neyarên partiyê ye ku ji bo armancên taybetî ên xwe cehda ji rêderxistina xebatê didan.

**Beşdarên rêzdar!**

Em di demekê de 20 saliya şehîdbûna rêberê mezin Dr. Qasimlo û hevalên wî bibîr tînin û rêz û hurmetê ji xebat û têkoşîna vî rêberê mezin digirin û bilind dinirxînin, careke din serbarê daxwazkirina berdewam a kom û komeleyên mirovhez ji dewleta Awusturya ji bo nasandina bikujên rêberên kurd bi dadgeheke navneteweyî û kifşkirina nasnameya terorîstî a rêberên Komara Îslamî a Îranê, lê hêj bi fermî vê dewletê helwesteke bersivder di asta wan hemû daxwaziyan negirtiye. Di demekê de ku tu kesî şik û guman nine, rêberên rêjîma Komara Îslamî a Îranê biryarderên vê tawana mezin bûn û belgeya nû ya cihê haşanekirinê jî bona selimandina vê rastiyê encama lêkolîna vê dawiyê a Polîsê dijî Mafyayî yê Îtalyayê ye û belavbûna zanyariyên vê sûçê ye ku Mehmûd Ehmedînejad Serok Komarê Komara Îslamî a Îranê ku yek ji rêveberên vê tawana terorîstî ye. Dr. Pîter Pîltz Endamê Parlemana Otrîşê û kesayetiyê naskirî ê vî welatî ku her ji destpêka encamdana vê tawanê ve di vekolînê de bûye, bi fermî ragihandiye rêberên Komara Îslamî a Îranê biryarderên vê cinayetê ne û ji dewleta Awustryayê xwastiye ji wê zêdetir li hember vê tawanê de bêdeng nebe û helwesta jêhatî bigre. Rejîmek ku him di asta hundir de di rewşeke pirr aloz û şepirze de ye û bi tevahî xelk jê bêzar bûye, tenê li ser bingeha derew, fêlbazî û zext û tundûtûjiyê maye. Ji bo selimandina vê rastiyê jî bûyerên piştî ragihandia encama binav hilbijartina dewreya dehem ya Serok Komariya rejîmê û diyarîkirina ser li nû a Mehmûd Ehmedînijadê terorîst wekî Serok Komar, naverok û kakila rêjîmê careke din li ber çavê kamerayên dezgehên ragihandin û welatên pêşkevtî nîşan da û derxist holê. Rêjîm tenê terora cesteyî nake, belkî rêberên vê rejîma kevneperest terora fikrî jî dikin û bêrêziyê bi kerameta xelkê û azadîxwazên welatê me jî dikin. Ji bo mayina xwe û rêjîma wan ya dîktator bi sedan kes ji keç û xortên azadîxwaz ên welatê me di xwînê de digevizînin û bêrehmane şehîd yan bê ser û şûn dikin. Di asta navneteweyî de jî li mêjdem e ev rejîme ji civaka demokrat û pêşverû terîk û mûnzewî bûye û bi binpêkirina mafê mirovan û neteweyên maf lê zevtkirî ên Îranê û xeter li ser ewlekarî û aştiya cîhanê û alîkar û piştevanê terorîzma cîhanî tê zanîn.

**Hevalên xweştivî!**

Rewşa siyasî ya welatê me bi qonaxeke nû re derbaz dibe. Pêvajoya bûyerên vê dawiyê li welatê me, ji bo çavdêrên siyasî û sivîl li asta hundir û navneteweyî guman nehişt ku di çarçoveya sîstema Komara Îslamî a Îranê de îmkana gihîştin gelan bi mafên xwe û dabînbûna demokrasî û dadperweriyê tune ye. Ew alî jî ku di wê şanogeriyê de ketin daw û telika lîstikên rejîmê, bersiva xwe wergirtin ku helwesta wan berevajî pêvajoya tevgera azadîxwaziya neteweyên Îranê û helwêsta rastbînane a hêzên siyasî bû. PDKÎ di vê derbarê de car din, piştevaniya xwe ji xebata girse a cemawerê neteweyên Îranê radigehîne, amadebûna xwe ji bo pêwendî û hevkariya dostane digel hêzên siyasî ên welatê me dide xuyakirin û bê dudilî nîşandan ji naveroka dijî mirovî a rejîmê di tevahiya xwe de, dê siyaseta xwe ya usûlî bidomîne û hewla pêkanîna eniyeke siyasî û yekgirtî ji hemû partî û aliyên bide ku ji bo wan armancan dixebitin û di vê rêyê de jî tu kospek nikare gavên wê şil bike. Her weke bi kiryar û piratîk derketiye holê bi zext û zor û terorkirina rêberan jî nekarîn viyana xurt û qahîm PDKÎ biçemînin û di rêbaza eslî de ji rê derxin.

**Xûşk û birayên delal !**

Di vê rê û resma girse û berfireh de û di 20'mîn salvegera şehîdbûna Dr. Qasimloyê nemir û hevalên wî de, em li hember canê paqij yê wan serê xwe ditewînin û peymana wefadariyê bi rêbaza wî re nû dikin û sozê didin xelkê Kurdistanê û hemû azadîxwazên welatê me, heta gihîştin bi armancên wan û asûdekirina ruha paqij a wan domkerê xebata wan bin û ala şoreşê her wisa bilind rabigirin.

Silav li canê paqij yê Dr. Qasimloyê nemir û hevalên wî

Bihiloşe rejîma terorîstperwer ya Komara Îslamî a Îranê

Serkeve tevgera azadîxwaz a neteweyên Îranê ji bo pêkanîna sîstemeke demokratîk û federal

Silav li rêvîngên rêbaza Qasimlo

**Deftera Siyasî a Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**22'ê Pûşpera 1388**
**13'ê Tîrmeha 2009**

agiri

## Bîr Û Ramana Dr. Qasimlo Herdem Zindî Ye

20 sal bi ser cinayeteke mezin ya terorîstî a rejîma Komara Îslamî a Îranê li hember neteweya Kurd û PDKÎ derbas bû. Di 13'ê Tîrmeha 1989'an de, Dr. Qasimloyê rêber û Ebdula Qadirî Azer, endamê Komîteya Navendî ya PDKÎ û nûnerê wê demê yê partiyê li derveyî welat û Dr. Fazil Resûl, di dema gotûbêjkirin li ser pirsa Kurd li Îranê ji aliyê dîplomat terorîstên şandî ên rejîma Komara Îslamî a Îranê û yek ji wan Mehmûd Ehmedînijad ve hatin şehîdkirin.

Di bîstemîn salvegera terorkirina Dr. Qasimloyê nemir û hevalên wî de, em wan bi rêz û hurmet bibîr tînin û bîr û dibêjin ramana Dr. Qasimlo herdem zindî ye û rêbaza wî heta serkevtinê dê ji aliyê rêvîngên wî bidome. **Desteya Weşana Agirî**

**Paşkoya Taybet Bi Boneya 20'mîn salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî** **Hejmar: 115**

# Di Bîstemîn Salroja Terror Û Şehîdkirina Dr. Qasimloyê Nemir De, Xelkê Rojhilatê Kurdistanê Gireveke Giştî Lidar Xist

Careke din hemaseyek netewî di dîroka xebata azadîxwaziya kurd li Kurdistana Îranê hate tomarkirin, di 20mîn salroja terorkirina rêberê zana û navdar yê Kurd, Dr. Ebdulrehman Qasimlo û hevalên wî ku di 13ê Tîrmeha 1989'an li Viyenê û li ser maseya gotûbêj li ser pirsa Kurd ji aliyê dîplomat terorîstên rejîma kurdkuj a Komara Îslamî hatin terorkirin, gund, herêm û bajarên Kurdistana Îranê di roja 13ê Tîrmeha 2009 'an (22ê Pûşpera 1388) di gireve seranserî de bû û bi her awayê mumkin rêberê xwe yê nemir bibîr anîn û nefret û bêzariya xwe ji sîstema terorîstperwer a Komara Îslamî nîşan dan.

Serbarê vê çendê ku rejîma Komara Îslamî ji meheke berî niha ve bi awayekî herî tund zext û givaş xiste ser xelkê Kurdistanê û bi hemû curekê hewl da pêşiya girêdana dikan û bazarên bajarên Kurdistanê bigire, xelkê şoreşvan û welatparêz yê Kurdistanê ji Makû heta Îlamê gellek netirsane û biwêrane û di helwesteke neteweyî û yekgirtî de bi



girêdana dukan û bazaran û awayên din ên çalakî û xebata sivîl, ji aliyekê rêz ji rêberê şehîd Dr. Qasimlo û hevalên wî girtin û ji aliyekî din ve terorkirina wan ji aliyê Komara Îslamî ve mehkûm û şermezar kir. Ji ber vê yekê ku xelkê nerazî û girevgirtî ê Kurdistanê di roja 22ê Pûşperê, derfeta wê çendê çi bin ku nûçe, fîlm û wêneyên girevgirtin û çalakiyên taybet ên vê boneyê bişînin derveyî sînorên Kurdistana Îranê, dem û dezgehên Komara Îslamî li Kurdistanê hemû hêl û alavên pêwendîgirtinê weke telefon û înternet girê dabûn, lê bi vî halî jî viyan û îradeya gel ew hewl û gavên wan jî vala kir.



Girev li ser bangewaza PDKÎ hate rêvebirin û eva 5 sal dibe ku xelkê Kurd bi giştî û nemaze endamên û alîgirên wê partiyê li gund û bajarên Rojhilatê Kurdistanê bi hilkevta 20mîn salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî girev û çalakiyên sivîl bi vê hincetê lidar dixin.

Piştî çend rojan ji birêveçûna wê gireva giştî a sivîl, zext û zora hêzên ewlekarî û leşkerî ên rejîmê bo ser xelkê beşdar yê wê gireva seranserî berdewam e û sedan kes hatine girtin û binçavkirin û azar û ezyeta bazarî û dikandarên Kurdistanê dikin.

**Nûçe û zanyariyên berfireh di vê derbarê de li ser malpera me**

# 20mîn Salvegera Şehîdbûna Dr. Qasimlo Û Hevalên Wî, Di Binkeya Deftera Siyasî A PDKÎ Û Navenda 3 Ya Kurdistanê De Bi Rê Û Resmeke Berfireh Hate Bibîranîn

Roja duşem, 13ê Tîrmeha 2009an, rê û resmek taybet bi hilkevta 20emîn salvegera şehîdbûna rêberê gelê Kurd û Sekreterê Gitşî yê PDKÎ û hevalên wî, di binkeya Deftera Siyasî a PDKÎ de, bi beşdariya sedan kesan birêve çû.

Rê û resm bi surûda neteweyî a "Ey Reqîb" û ragirtina deqîqeyek bêdengî bona rêzgirtin ji canê paqij ê şehîdên Kurdistanê bi taybetî Dr. Qasimlo û hevalên wî dest pê kir. Piştre Mihemednezîf Qadirî, endamê Deftera Siyasî a PDKÎ, peyama Deftera Siyasî a PDKÎ bi vê hincetê pêşkêş kir.

Dûre helbestvanê navdar yê Kurd, **Mamosta Şêrko Bêkes**, pexşanek taybetî bi navê "Qasimlo, Sûlek bû ji Gulale û dilek ji Pembû", pêşkêş kir ku ji aliyê beşdaran ve bi germî hate pêşwazîkirin.

Di rê û resmê de çendîn partî û rêxistinên siyasî, civakî û çandî ku peyamên taybet şandibûn, ji ber kêmiya derfetê tenê navê wan hate xwendin.

Hêjayî gotinê ye ku ew partiyên ku peyam ji bo rê û resmê şandibûn, nûnerê

Navenda 3 a Kurdistanê





Binkeya Deftera Siyasî ya PDKÎ

wan jî di hola birêveçûna rê û resmê de amade bûn. Her wiha "**Sînem Celadet Bedirxan**" û **Dr. Cemşîd Celadet Bedirxan**", du kesayetiyên edebî ên Kurd di rê û resmê de beşdar bûn.

Di wê rê û resmê de çend sirûd û pexşan jî hatin xwendin.

**Li Navenda 3 a Kurdistanê Dr. Qasimlo û hevalên wî hatin bibîranîn**

Herwiha Roja şemî, 11ê Tîrmeha 2009an, bi cê hincetê li Navenda 3 a Kurdistanê, rê û resmek bi beşdariya Têmûr Mistefayî, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ û çend endamên rêberiya PDKÎ û sedan kesên din û her wiha nûnerên partiyên Kurdistanî hate lidarxistin.

Piştî xwendina Sirûda netewî û deqîqeyek bêdengî bo canê paqij yê şehîdên Kurdistanê, Sidîq Derwîşî endamê Komîteya Navendî û berpirsê Navendê, di axavtinekê de piştî bixêrhatin kirin mêvanan, li ser çend aliyên jiyana Dr. Qasimlo, axivî û basa kesayetiya bilind a wî şahîdê nemir kir. Dûre Têmûr Mistefayî bi nûneratiya Deftera Siyasî, li ser kesayetiya Dr. Qasimlo û rola wî di bizava neteweyî a gelê Kurd de, axavtinek pêşkêşî beşdaran kir.

Di wê rê û resmê de peyama çend partî û rêxistinên beşdar hate pêşkêşkirin û çend sirûd û pexşan jî hatin xwendin.

# Konferansa Navneteweyî A Rêzgirtin Ji Hizr, Xebat Û Fîdakariyên Dr. Qasimlo, Di Senaya Fransayê De Hate Lidarxistin

Roja înê, 17’ê Tîrmeha 2009’an, bi hinceta 20’emîn salvegera terorkirina şehîd Dr. Ebdulrehman Qasimlo, ji aliyê deftera nûneratiya PDKÎ li Parîsê û Enistîtuya Kurd li Parîsê, konferansek navneteweyî di yek ji holên Meclîsa Senaya Fransayê de hate lidarxistin.

Konferans bi axavtina Dr. Kendal Nezan, Serokê Enistîtuya Kurd li Parîsê û yek ji nêzîktirîn hevalên Dr. Qasimlo, dest pê kir. Navhatî serbarê bixêrhatina beşdarên konferansê, destpêka karê konferansê ragihand ku ji 4 panelan pêk hatibû.

Panela yekem bi serokatiya Profesor Jûyîs Bilov, mamostaya ziman, wêje û dîroka Kurd û hevala nêzîk ya Dr. Qasimlo, dest pê kir.

Di panela yekem de ew kesane axivîn: 1. Nesrîn Qasimlo, hevjîna Dr. Qasimlo 2. Jûliyet Ens, civaknas û yek ji dostên Dr. Qasimlo 3. Dr. Felorans Fêbêr, Seroka berê ya Saziya hevkariyên bijîşkî û dermanî a navneteweyî(navhatî yekemîn kes bû ku di sala 1981’an de li ser daxwaza Dr. Qasimlo bona hevkarîkirin bi xelkê Kurd, hate Kurdistana Îranê û piştre jî bi şandina girûpek bijîşk bo çiyayên Kurdistanê bo heyamê 10 salan, hevkariya PDKÎ kiriye) 4. Dr. Kendal Nezan, Serokê Enistîtuya Kurd li Parîsê.

Her yek ji wan 4 kesan di axavtina xwe de bas ji çawaniya naskirina Dr. Qasimlo, çûna Dr. Qasimlo bo Parîsê di temenê 17 saliyê de û çûna wî ji bo derkirina navhatî li welatê Çekuslovakiyayê bi sedema dijberîkirina wî tevî dagirkirina welatê Çekê di buhara sala 1968’an de ji aliyê arteşa Yekîtiya Soviyetê ve, akincîbûna Dr. Qasimlo li Parîsê û gotina dersa ziman û wêjeya Kurdî li zanîngeha Sorbonê, çalakiyên siyasî yên Dr. Qasimlo li Parîsê, çapkirina rojnameya Kurdistan’ê di wî welatî de, pêkanîna têkiliyên tevî partî û kesayetiyên siyasî ên welatên derê, kirin. Panela yekem ji bo jiyana Dr. Qasimlo li derveyî welat, hatibû terxankirin.

Panela duyem bi serokatiya Dr. Kendal Nezan birêve çû. Ev panel ji bo nirxandin û lêkolînên polîs û dezgehên dadwerî ên dewleta Otrîşê li ser terorkirina Dr. Qasimlo û her wiha binpêkirina dadperweriyê ji bo parastina qazanc û berjewendiyên dewletan, hatibû terxankirin.

Di panela duyem de Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Dr. Ebdulkerîm Lahîcî, Cîgirê Federasyona Navneteweyî a Komeleyên Parêzer ên Mafên Mirovan û Serokê Civata Parastina Mafên Mirovan li Îranê, axivîn.

wan di axavtinên xwe de li ser vê yekê tekez kirin ku dewleta Otrîşê bona parastina berjewendiyên aborî ên xwe tevî dewleta Komara Îslamî a Îranê, dadperwerî û edalet kirine gorî û bi destê xwe bikujên mamostayê azadiyê bi balafirê şandin Îranê. Wan her wiha zêde kirin ku tenê dewleta Otrîşê nebûye ku helwestek li hember terorîzmê girtine, belku dewletên din ên Ewropayî jî siyasetek wiha şopandine û dadperwerî kirine goriyê qazanc û berjewendiyên aborî.

Di dawiya panela duyem de peyama Xatûn Sîsî Daynîngir, derheq kesayetiya Dr. Qasimlo û çawaniya şehîdbûna navhatî û helwesta nemirovane a berpirsên dewleta Otrîşê a wê demê, hate pêşkêşkirin.

Panela sêyem bi serokatiya Mark Kirawtîs, rojnamevanê naskirî yê Fransî, bona diyarîkirina hizr û rayên wî li ser şehîd Dr. Qasimlo, kesayetî û çalakî û tekoşînên wî hatibû terxankirin.

Di vê panelê de ji bilî Mark Kirawtîs, çend kesên din jî axivîn ku bi vî awayî ne:

1. Dr. Bernard Giranjon, Serokê berê û Serokê Îftixarî yê Saziya Bijîşkên Cîhanê ku bi şanda girûpekî bijîşkî bo nava PDKÎ bo heyamê 7 salan hevkariya PDKÎ kir.

2. Karol Pirûnhûper, rojnamevan û nivîskara Venezoelayî ku pirtûkek bi navê “Hêvî û Mirina Rehmanê kurd” bi zimanê Spanyolî çap û belav kiriye.

3. Riza Diqetî, Wênegirê naskirî yê Îranê.

Kesên han di gotinên xwe de Dr. Qasimlo wekî rêberekî hişyar, mirovhez, aştîxwaz, demokratekî rastîn û xebatkarekî hûrbîn, kesayetiyek ku li dijî tundûtûjiyê bû, kesek ku bawerî bi hebûna exlaq di siyasetê de hebû û mirovek ku hez ji çareseriya pirsa Kurd ji rêy aştîxwazane ve bû, binav kirin.

Panela çarem bi serokatiya Jêrar Şaliyan, nivîskar û pisporê pirsên jeopolîtîkî birêve çû.

Mijara vê panelê, hizr û xebata siyasî ya Dr. Qasimlo û hevrengbûna wê tevî xebata azadîxwazane û



Ji çepê ve: Nesrîn Qasimlo, Mistefa Hicî, Mîna Qasimlo (Keça Dr. Qasimlo) û Maks neviyê Dr. Qasimlo

demokrasîxwazane a îroyîn bû.

Di vê panelê de kesên han axivîn:

1. Canatan Randel, nivîskar û rojnamevanê naskirî yê rojnameya “Washington Post”ê

2. Alen Şunal, yek ji berpirsên Partiya Sosyalîst a Fransayê

3. Hesen Şerefî, Cîgirê Sekreterê Giştî yê PDKÎ.

Di dawiya panela çarem de Dr. Kendal Nezan, peyama Bernard Koşner, dostê nêzîk ê Dr. Qasimlo û Wezîrê Karê Derve yê Fransayê, bi vê hincetê xwend.

Konferans êvariya heman rojê bi nîşandana fîlmekê li ser xebata xelkê Kurdistanê û gotûbêjekî Dr. Qasimlo bi dawî hat.

Hêjayî gotinê ye ku wan partî û saziyan jî bi şandina şandek nûneratiyê, di konferansê de beşdar bûn:

1. Partiya Sosyalîst a Fransayê
2. Partiya Komonîst a Fransayê
3. Yekîtiya Nîştimanî a Kurdistanê
4. Partiya Demokrat a Kurdistanê
5. Partiya Sosyalîst a Kurdistanê
6. Komkar
7. Partiya Yekîtiya Kurd li Sûriyê
8. Saziya Yekîtiya Fidayî a Gelên Îranê
9. Şêwra Demkî a Sosyalîstên çep ên Îranê
10. Saziya Karkerên Şoreşvanên Îranê-Rêya Karker
11. Bizava Demokrasîxwazên Demokrat û Layîk ên Îranê

Her wiha xatûna Mîna Qasimlo, keça şehîd Dr. Qasimlo û Maks, neviya Dr. Qasimlo di konferansê de beşda bûn.

**Li welatên din yên cîhanê sedan meş, semînar û konfernas bi wê hilkevtê hatin lidarxistin**

**Nesrîn Qasimlo:**

# "Dr. Qasimlo Her Bi Qise Û Teorî Demokrat Nebû, Ji Ber Ku Bi Kiryar Jî Diselimand Ku Demokrat E Û Encamên Demokrasiyê Jî Qebûl Dikir"

**Hevpeyvîn: Rehîm Reşîdî**

Rojnamevanê hêja û xwedî şiyan, Rehîm Reşîdî ji bo min telefon kir û got ku rojnameya "Kurdistan"ê û duheftînameya Agirî dixwazin di yad û bîranîna 20'mîn salvegera terora viyenê de hevpeyvînekê bi we re çê bikin...

Pirsiyar ji bo min xwendin û min jî daxwaz qebûl kir û bi vî awayî bersiva pirsan didim.

Berî her tiştî dixwazim bibêjim ku "Kurdistan" û Agirî di xebata rojnamevaniya kurdî û tekoşîna şoreşgerane de heya niha rolek çalak, ektîv û cihê hurmetê di Kurdistana Îranê de lîstine. Ez hêvî dikim bi kar û tekoşîna nivîskarên niha ku bi gotina Reşîdî piraniya wan ciwanên bi şiyan û keddar in, pitir geşe bike û her pêşde biçe.

Berê jî min gotiye ku min bîranînên zaf tevî "Kurdistanê" de hene. Wê dema ku ez bi qaçaxî li Tehranê dijiyam, min di çap û belavkirina wê de hevkariya Dr. Qasimlo dikir. Xwezî ji wan rojan ku rêya jiyana min bo hertimî bi kurd û xebata mafxwazane ya kurdan ve girê da û dê heta dawîn nefesa xwe jî her wefadar bi kurd û armancên kurdan bimînim. Ez bêguman im ku ev netewe dê ser bikeve.

**Pirs: 20 sal bi ser Şehîdkirina rêberê mezin yê gelê kurd derbas dibe û roj li pey rojê rêbaza Dr. Qasimlo xurtir dibe û evîndar, rêvîng û xebatkarên wê zêdetir li dora wê rêbazê kom dibin. Te weke hevsera wefadar ya Dr. Qasimlo, piştî borîna van 20 salane çi hestek heye? Gelo hûn li ser vê beweriyê ne ku bîr û hizrên Dr. Qasimlo zêdetir ji serkevtinê nêzîk bûne?**

**Nesrîn Qasimlo:** Eva ku ew teror di civakek demokratîk de birêve çû û eva ku edalet û dadperwerî birêve neçû, ez 20 sal e ku hest bi nerehetî û nigeraniyê dikim, ji wan kesan nerihet im ku xwîna rêberên kurdan kirine goriyê qazanc û berjewendiyên aborî. Bîr û hizrên Dr. Qasimlo, mirovdostane û demokrasîxwazane bûn. Îro ne tenê Kurdistan, belkî gelên din yên Îranê û azadîxwazên wî welatî jî weke Dr. Qasimlo difikirin. Lewra serkevtin her ji bo wê rêbazê ye. Kurd ger bi başî ew mîratên ku Dr. Qasimlo ji wan re bicî hiştiye bînin cîh, serkevtin misoger e û tu zordarek nikare pêşiya serkevtina wan bigre.

**Pirs: Di 22'ê Pûşpera çend salên derbasbûyî de û bi taybet ji sala 1384'ê Rojî (2005) virdetir, civatên xelkê Kurdistanê hemû salekê yekdeng û bi yekhelwest bi daxistina dukan û bazaran û temirandina çirayên malan û çend şêweyên din, yad û bîranîna Dr. Qasimlo bilind dinirxînin û cinayeta Komara Îslamî mehkûm û şermezar dikin. Bi raya we ew terze helwestane ku her sal berîntir û berfirehtir birêve diçin, heya çiqas bandor û karîgerî heye?**

**Nesrîn Qasimlo:** Karîgerî û bandora van terze bizavane zaf e û ez keyfxweş im ku neteweya kurd rêbaza rêberên xwe wunda nekiriye û bi her awayekê ku ji wan re dilive, yad û bîranîna wan birêz û bilind dinirxînin. Eva jî baştirîn mînak e ku kurd şerxwaz û xwînrêj nebûye û nine. Xebatek serkevtî ger bi nirxek kêmtir jî ser bigre, pirr baştir e.



**Eva ku ew teror di civakek demokratîk de birêve çû û eva ku edalet û dadperwerî birêve neçû, ez 20 sal e ku hest bi nerehetî û nigeraniyê dikim, ji wan kesan nerihet im ku xwîna rêberên kurdan kirine goriyê qazanc û berjewendiyên aborî**

Di vê derheqê de ez pîrozbahiyê ji neteweya kurd û birêveberên vê xebatê dikim û bi germî destê wan diguvişim.

**Pirs: Xelkê Kurdistanê zêdetir dixwazin li ser kesayetiya Dr. Qasimlo bizanin. Gelo riftar û xebata şoreşvaniya Dr. Qasimlo rengvedan li ser jiyana rojane ya şehîdê nemir hebû yan na?**

**Nesrîn Qasimlo:** Bêguman, kar û kiryarên Dr. Qasimlo hev digirtin. Ew her bi qise demokrat nebû, ji ber ku bi kiryar jî diselimand ku demokrat e û encamên demokrasiyê jî dipejirand. Wî ji bo modernîzekirina xebata Kurd û PDK'ê, hewleke zaf da. Karîgerî û bandora Qasimlo li ser xebata millî- demokratîk a Kurd li riftar û livîna demokratane û baweriya kûr a wî bi demokrasiyê çavkanî digirt.

**Pirs: We sala borî bi hevkariya komîta PDKÎ serdana Amerîkayê kir û di çendîn civînên girîng di astek bilind de hûn li ser dosya Dr. Qasimlo axivîn. Em dikarin bizanibin ku we çi bersivek stand? Gelo li wê seferê di pêxema dûketina dosyaya Dr. Qasimlo de we çi piştevanî bidest xist?**

**Nesrîn Qasimlo:** Di rastî de li Senaya Amerîkayê, ez gazî kirim. Min ji wan pirs kir ku gelo belgeyên hewce ji bo dubare ve bûna perwendeya Viyenê hene? Çunku dewleta Otrîşê heya niha jî amade nîne di vê derheqê de çi gavekê bavêje. Ew teror zêdetir bûye goriyê dan û standinên bazirganî. Hûn dizanin ku hukûmeta wê demê ya Otrîşê sîlah û çek û cebilxane bi Îraq û Îranê firotibûn.

Di halekê de ku wî welatî weke welatek bêalî di şerê navbera Îran û Îraqê de, mafê vê yekê nebû ku wî karî bike. Lewra pirr ditirsiyan ku di rewşa wê demê de ew tişt eşkere bibe.

Lê ez bêguman im ku ew dosya dê bikeve kar û edalet û dadperwerî jî cîbicî bibe. Ji ber wê jî hin kes hene ku bo cîbicîbûn û birêveçûna edalet û vê dadperweriyê xebat û tekoşînê dimeşînin. Bila ez jî vê yekê bi çavên xwe nebînim, lê eva jî rastiyek e û heta ser veşartî namîne.

**Pirs: Xelkê Kurdistanê we bi dayîka Kurdan nas dikin û rêz û hurmetek taybetî ji bo we hene. Peyama we ji bo xelkê di pêvajoya xebata berheq a gelê me de çiye?**

**Nesrîn Qasimlo:** Gava ez guhdariya van peyvan dikim, dilê min dihele. Min karek wisa bo Kurdan nekiriye ku hêjayî ew hemû rêz û hurmetê bim. Lê tim dilê min tevî wan û xebata wan e. Ez dizanim ku ew, hêja û jêhatiyê jiyanek serdemiyane ne. Hêviya min ew e ku di domandina xebat ji bo rizgariyê de berdewam bin û ez bawer im ku hûn dê serkevin. Hêviya min, ev e ku qet rê û rêbaza Qasimlo ber nedin, bona wê ku evîn û hurmeta wan bo xelkê û xaka wan kêm nebe. Kurd divêt bizanin ku ew jêhatî azadî û serbestiyê weke gellek neteweyên din yên vê cîhanê ne. Mafê Kurdan e ku ji bo gihîştin bi jiyanek baştir serbarê hemû çewisandin û tepeseriyekê, xebata rewa û berheq ya xwe bidomînin. Di vê xebatê de ez tim digel wan de me û serkevtinê ji wan re bi hêvî dixwazim.

# Rêberê Rûken



Dr. Yekta Uzunoglu

Demekê beriya niha ji min hate xwestin ku ez bi hilkevta 20'mîn sersaliya şehîdketina Dr. Ebdulrehman Qasimlo bendekî binivîsim.

Ew roj ev roj, her demekê ku min ceriband ku vê bendê binivîsînim, ez hêj di destpêkê de mam, mumkin nebû ku bendê binivîsînim. Ez bi xwe jê nerehet bûm ku ez vê bendê ku min soz dabû bi gellek ceribandinan jî nikarim dest pê bikim û binivîsim. Bendekî li ser tişt yan kesekî nivîsandin ne zehmet bû, min hezaran gotar bi çend zimanan nivîsand û weşandibûn. Lê li ser Dr. Ebdulrehman Qasimlo pistî bîst salan jî bend nivîsandin bi êş, keder, xemgînî girêdayî bû. Çi li ser dost, hêval û mamosteyê xwe binivîsînim? Her carê ku min li wî fikirî û xwest ku dest bi nivîsandina bendê bikim, ketim nav êşan, xemgîniyê, lê her carê ku min ew anî bîra xwe, ew timî bi rûyê xwe yê biken li ber çavên min de bû. Tu wêneyekî din yê Şehîd Dr. Qasimlo di bîra min de tunebû, derveyî rûyê wê yê rûken.

Ez di serî de fikirîm, ger mêjiya min tenê ji wî wêneyê Şehîd re eciyekî bê hempa di hebûna xwe de dabe, wê çaxê di nav wî wêneyî de tiştê gellek taybetî heye.

Min wêne û fîlmên rêberen din yên dinyayê ên sedsala bîstan anî ber çavên xwe: "Rooswelt", "Churchill", "Stalin", "De Gaulle", "Tito" û yên din. Rûyê hemûyan di wêneyên wan de, di filman de tûre û bi meede bû, hişk bûn, bêken bûn. Gava ku "Rooswelt" wek istisna di filmekî de dikeniya, ji dûr ve diyar dikir ku ji dil nakene, bi zorê bo wêneyan, bo wênekêşan wusa dike ku bi rûyê biken wêneyê wî were kişandin. Ev kena wî ji dil ne bû, destkird bû.

Lê şehîd Dr. Qasimlo timî di her rewş û halekê de ji dil dikeniya û bi her kenê enerjî, şahî, dostanî ji tîrêjên rojê tûjtir di derdora xwe de belav dikir, bi van tîrêjan kesên herî xemgîn yên di derdora wî de ji wê halî azad dikir, ew jî dilşa dikir. Berpirsiyarî, zehmetî û karê tu rêberekî sedsala 20'an wek Dr. Qasimlo nebû. Ew rêberê gelekî mezlûm, bêkes, bêhêvî, destvala û ji çar aliyan ve di nava agir de bû. Dr. Qasimlo neku ev yekane nizanibû yan hîs nedikir, na! ew ji zêdetirî piraniya rêberên Kurd yên wê demê realîteya zalim a gelê xwe dizanibû, nas dikir, hîs dikir. Lê di nava vê bêhêviyê de ew bûbû tîrêjê hêviya gelê xwe. Di hundirê wî de êş, kul, keder û xemgînî, lê di rûyê wî de timî kenekî tijî jiyan hebû.

Min Dr. Qasimlo di kolanên Pragê de wekî heval, di mala wî de, di nava jin û zarokên wî de wek bav, di zanîngehên Prag û Parîsê de wek mamoste, di nav siyasetvanên Ewropî de wekî siyasetmedarekî nûjen, di ser çiyayên Kurdistanê de li ser hespê bi şal û şepik, bi çek wek şoreşger nas kir. Cilên wî, kesên derûdora wî, coxrafyaya ciyê ku têde bû, dihat guhartinê, rast e, lê tenê tiştekî wî nedihat guhartin û timî pê re bû, ew jî rûkeniya Şehîd Dr. Qasimlo bû. Şehîd Dr. Qasimlo sembol û şana rûkenî, rûkenî jî şana Dr. Qasimlo bû, ji hev nediveqetiyan, cuda nedibûn.

Ew ji esmanê Kurdistanê bi tîrêjên rûken ji gelê xwe yê mezlûm, lê hertim mazbût re rêberiya xwe herdem dê bidomîne.

Ez, heval û hogirên wî yên Çek, serbilind in ku di jiyana xwe de me kesayetiyekî wek Şehîd Ebdulrehman Qasimlo nas kir û bûn dostê wî.

Ew dê ciyê xwe di hebûna me de, timî wekê rêberekî rûken yê bê hempa biparêze… .



**Berpirsiyarî, zehmetî û karê tu rêberekî sedsala 20'an wek Dr. Qasimlo nebû. Ew rêberê gelekî mezlûm, bêkes, bêhêvî, destvala û ji çar aliyan ve di nava agir de bû. Dr. Qasimlo neku ev yekane nizanibû yan hîs nedikir, na! ew ji zêdetirî piraniya rêberên Kurd yên wê demê realîteya zalim a gelê xwe dizanibû, nas dikir, hîs dikir. Lê di nava vê bêhêviyê de ew bûbû tîrêjê hêviya gelê xwe**

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdullah Hicab**

# Komara diz û derewînan *(3)*

**Beşa 3**

Ji Xatemî re heya Ehmedînijad Mîr Husên Mûsewî bi piştgiriya Muhemd Xatemî û Haşimî Refsencanî cesaret girt ku dubare vegere navkora siyasetê û bikeve kêbirkiya hilbijatinên serokkomariyê. Li destpêka pêvajoya diyarîkirina berendaman, diyar bû ku di navbera wî û Xatemî de diyalogek xurt heye ji bo ku ew dakeve meydanê û riya Xatemî bimeşîne. û dema Mûsewî daxwaziya Xatemî û hevbîrên wî pejirand û pilana xwe ya hilbijartinê eşkere kir, diyar bû ku dê li ser heman riyê here ku Xatemî bingeh jê re danî bû. Pilana Mûsewî ya abûrî, her çend bi rûmet rengek nû hebû, lê di bingeha xwe de berdewamiya heman pêvajoyê bû ku Xatemî û berî wî jî Haşimî Refsencanî danî bûn. Di warên civakî û siyasî de jî Mûsewî li ser şopa Muhemed Xatemî meşiya. Lewma siyaseta Mûsewî, tiştek cudatir ji ya dema desthilatariya Xatemî nebû.

Eger mirov awirekê bide pêvajoya serdema Xatemî, kêmasiyên karê Mûsewî hê eşkeretir xuya dikin.

**Ji ber nebûna bingeha xebata siyasî di çarçoveya partiyan de, ne mumkin bû û niha jî mumkin nîne ku armancên demkurt û demdirêj yên tu pêvajoyên siyasî li hundirê Îranê werin diyarkirin**

Pêvajoya ku bi navê „reform" di dema Xatemî de hate rojevê, an di çarçoveya duruşman de ma, an jî bi nîvçoyî ma. Her li destpêka dewrana serokatiya Xatemî, guman hebû ku tevgerek îhtimalî ya guhertinxwaz bikare sîstema siyasî ya teokratîk ya Îranê biguhere. Ji ber wê hindê guhertinên ku qirar bû li bin Qanûna Bingehîn ya Îranê û bi rizamendiya Weliyê Feqîh pêk bên, bi guman dihatin temaşekirin û nekarîn baweriya gelên Îranê bi dest bixin. Lê dîsa jî, bi hêviya ku ew pêvajo bibe tevgerek girseyî, piştgiriyek berfireh ji beşeke civakê stand. Bi taybet jinan, gencan û hejmarek zaf ji kurdan bi awayek aktîv beşdariya wê tevgerê kirin. Her kes û her komek ji xelkê bi hêviyekê beşdariya wê pêvajoyê kir ku bi mebesta xweşkirina rê ji bo guhertinên pêşerojê dihate destekkirin.

Ji ber nebûna bingeha xebata siyasî di çarçoveya partiyan de, ne mumkin bû û niha jî mumkin nîne ku armancên demkurt û demdirêj yên tu pêvajoyên siyasî li hundirê Îranê werin diyarkirin. Ji ber hindê gelên Îranê, hem li dema Xatemî û hem jî niha di pêvajoya kêbirkiya Mûsewî û Ehmedînijad de, pitir dengê xwe dane daxwaziya guherînan ku armanca wan bû. Lê weke dema Xatemî, dubare tevgera reformxwaz û piştgirên wê nekarîn û nexwast programa hevbeş ya siyasî ji bo guhertinan amade bikin.

Baweriya bi guhertinan, ku di nava hin komên gel de çê bûbû û weke hîmê tevgera nû ya xwepîşander kar kir, digel ku bi tundûtûjiyê re rûbirû bû û bi tundî hate şikandin. Lê hê ber xwe dide û dê teslîm nebe. Piraniya serok û piştgirên tevgera protestokirina pêvajoya diyarîkirina Ehmedînijad, di dema berê de xwedî desthilat bûne û nikarin pêşengiya tevgera guhertinxwaz bikin. Weke hatî baskirin, Refsencanî û Xatemî piştgirên sereke yên Mûsewî ne û her duyan pêştir ezmûnek ne qenc ji rêveberiyê ji xwe nîşan dane.

Sala 1999'an, Muhemed Xatemî ku xwe guhertinxwaz û moderat dihesiband, li hember xwepîşandana komek xwendekarên zanîngeha Tehranê ku reformên siyasî dixwestin, helwêstek tund girt. Di encama wê helwêstê de hêrişa hêzên Besîc ku bûbû sedema kuştin, birîndarbûn û girtina gellek kesan, ji aliyê mehkemê ve nehate şopandin. Di dawiyê de jî helwêsta Serokkomar, ya Parlemana demê û ya muhafezekaran li ser xwendekarên guhertinxwaz weke hev bû. Havîna sala 2003 serokkomar û parlemanê bi hev re li dijî xwepîşanderên ku guhertin dixwestin, helwêst girtin û ew bi dijberiya bi şoreşa îslamî re tawanbar kirin.

Ji aliyê din ve hewlên hin parlemanteran ji bo kêmkirina desthilata Şêwar Nobedar, her di dema Xatemî de bû ku hate astengkirin û negihîşt tu encaman. Ji ber ku ne Serokkomar, ne Yasaya Giştî û ne jî rêberê olî piştgiriya xwestekek bi vî awayî nekirin. Dema dengoya (basa) li ser îhtimala guhertinan di yasaya Îranê de hate belavkirin, mîlîsên Ensarê Hizbullah dest avêtin girtin, bêserûşûn (wenda)kirin û kuştina guhertinxwazan. Li sala 2000'ê, hevkarê herî nêzîk yê Serokkomar, Seîd Heccariyan hate terorkirin û bi birînek giran canê xwe xilas kir, lê Xatemî nekarî û ne jî xwest ji hevkar û piştevanên xwe yên guhertinxwaz xwedî derkeve.

Tenê di dema xebata dewra 6'ê ya Parlemanê de û li bin siya desthilatariya Xatemî, ji sala 2000 heya 2005'an, pitir ji 100 rojname û govarên guhertinxwaz ji aliyê muhafizekaran ve hatin girtin. Parlemanê pêşniyarbiryara Yasaya

**Bi kurtî dema mirov dosyeya karê piştgir û alîkarên Mûsewî dinirxîne, tu cudahiyekê di navbera wan û Ehmedînijad de nabîne**

Çapemenî û Ragehandinê anî rojevê, lê ji ber dijberiya Konseya Parêzvan nekarî wê bide pejirandin. Di dawiyê de Xameneyî destwerdan kir û yasayek li gor dilê muhafizekaran da pejirandin. Hin parlemanterên ku sala 2001 li ser girtina rojname û rojnamevanan dengê protestoyê bilind kiribûn, bi xwe hatin girtin. Nûnerên parlemanê weke Husên Luqmanîyan û Fatime Heqîqetcû hatin cezakirin. Pêngava ku weke nîşaneyek ji guhertinên siyasî li Îranê dihate nîşandan, konferansek siyasî bû ku ji aliyê hin rewşenbîrên Îranî ve, sala 1999'an, li Berlînê hatibû girtin. Lê meha çile ya sala 2000'an, beşdarên

konferansê, dema vegeriyan Îranê, hatin girtin. Rojnamevanê naskirî Ekber Gencî 10 sal cezayê girtinê stand û Xatemî tu karek ji bo azadiya wî nekir.

Di warê civakî de, li wê dema Xatemê serokkomar, Parlemanê hewil da ku yasayên li ser mafên mirovan hinekê sererast bike. Pêngava herî berçav ew bû ku temenê zewaca keç û kuran biguhere. Parlemana "refomxwaz" meha Tebaxa sala 2000'an pêşniyarbiryara "temenê zewacê" pejirand. Li gor biryarê temenê zewacê ji bo keçan ji 9 salî re dibû 15 sal û ji bo kuran ji 14ê ve bibû 18 sal. Biryar ji aliyê Şêwra Nobedar ve nehat pejirandin û piştî 2 sal bigir-bikêş û gengeşe, di dawiyê de parleman û Konseyê li hev kirin ku temenê zewaca kiçan bibe 13 û ya kuran bibe 15. Li gor yasaya ku meha Hizîrana 2002'an hate pejirandin, zarokên kêmtir ji temenê zewacê, pêwîst bû heya bi xwestek û biryara dayîk û babên xwe bizewicin. Lê hewildana ji bo rakirina cezayê recimkirinê ku ew jî qirar bû biryar li ser bê dan, negihîşt tu armancê. Di warên ewlekariya civakî, sîstema yarme (Bîme), parastina mafên mirovan û hwd de, guhertinek berbiçav ne di siyaset, ne di yasa û ne jî di piratîka rêjîmê de pêk nehat.

Ji aliyê din ve mijara narkotîkê (madeyên hişber) hem wê demê û hem jî niha jiyana xelkê tehdîd dike, bêy ku berpirsiyarên wê demê an yên niha rêçareyekê ji bo wê pirsgirêkê bibînin. Li gor hejmarên fermî, di Îranê de pitir ji 2 milyon kes narkotîkê dikêşînin. Hejmarên rastî pirr ji wê pitir in.

Di warê abûrî de, ku yek ji babetên nîqaşên hilbijartina wê carê bû, siyasetvanên pêşîn her weke yên niha tawanbar in. Mûsewî, Xatemî, Refsencanî û Ehmedînijad û Xameneyî hemûyan bi hev re abûriya welêt xisitine destê diz û cerdeyên abûrî. Niha jî weke dema Xatemî, 80% abûriya Îranê girêdayiyê dahata neftê ye. Li gor hin şiroveyên abûrî, 80% dewlemendiya Îranê di destê 10% xelkê dewlemend û 20% dewlemendiya welat jî di dest 90% xelkê kêmdahat de ye. Di nava qada dewlemend de jî serokên rêjîmê weke Haşimî Refsencanî û malbata wî, kurê ayatollah Xameneyî û Muhsin Refîqdûst û gellek kesên din hene. Ji wan bi der serokên din yên rêjîmê berpirsên Bonyad an weqfên mezin yên abûriya welat in ku tê texmînkirin 50% dewlemendiya welat di destê wan de be.

Li Îranê, bi kêmî 7 Bonyad hene ku 5 ji wan pirr mezin in û girêdayiyê rêberê olî û dezgehên bi wî ve girêdayî ne: Bonyade Mustazafîn û Canbazan; Astanê Qudsê Rezewî; Bonyadê Şehîd; Îmdadê Îmam Xumeynî û Bonyadê 15ê Xurdad. Hemû ew bonyad dîrekt girêdayî buroyên serokê olî ne û dikarin maliyat û hisabê nedin dewletê. Lewma bi milyaran alîkariya torên terorîstî yên ser bi Sipahê Pasdaran dikin.

Di dema Xatemî de, hewlên ji bo taybetîkirina abûriyê an derxistina abûriya Îranê ji destê xurtûmçiyên ku bi navê Bonyad kar dikin, negihîşte tu encamekê. Dema Xatemî ji bo cara duyemîn bo serokkomariyê hat hilbijartin, soz da bi kêmî 737 şîrket û kompaniyên dewletî bifroşe beşa taybet. Dema wî serokkomarî radestî Ehmedînijad kir, diyar nebû ka ji seda çend ji wê sozê hate cî. Di meha gulana sala 2002'an de, meclisê yasaya parastina sermayerazandina biyanî li Îranê pejirand, ku bi caran ji ber netifaqiya di navbera parleman û Şorayê Nigehban de hatibû paşvedan. Wê yasayê rê vekir ku weqf û dewlemendên bi rêjîmê ve girêdayî pitir qazancê ji sermayeya cîhanî bibînin. Piraniya sermayeya derve li sektora neftê tê razandin. Şîrketên Almanî, Fransayî, Îtaliyaî, Japonî, Rûsî, Norwêjî û hwd li Îranê kar dikin. Di sala 2003'an de eşkere bû ku kompaniya Statoil ya Norwêjê li derveyî yasayê soza 115 milyon kron (nêzîk15 mil. dollar) bertîl dabû kesek Îranî bi navê Ebbas Yezdî heya ku ew jî pere bide kurê Haşimî Refsencanî ji bo ku agahdariyan bide wan ka çawan dikarin protokolek abûrî bi Îranê re qazanc bikin.

Di warê têkiliyên bi cîhana derve re jî, her çend Xatemî hewl da rûyê Îranê yê rastî veşêre, lê Ehmedînijad, nîşan da ku Komara Îslamî li gor pîvanên cîhanî danûstanê nake. Mûsewîyê ku weke "moderat" dixwest vegere sahneya siyasî, derfet nedît ku siyaseta Xatemî vejîne.

Bi kurtî dema mirov dosyeya karê piştgir û alîkarên Mûsewî dinirxîne, tu cudahiyekê di navbera wan û Ehmedînijad de nabîne.

**Mafê Mirovan**



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

## Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Dereve De

***Peymanên nawçeyî***

Ji bilî peymanên cîhanî, hin peymanên nawçeyî yên têkildar bi mafê mirovan hene.

Yên herî giring Konvansiyona Mafê Mirovan û Mafên Bingehîn ên Serbestiya Mirov ya Ewropayê ye (1950), Konvansiyona Amrîrka ya Mafên Mirovan (1969) û Peymana Mafên Mirov û Xelkê ya Afrîqa (1981). Li sala 1961'an Peymana Civakî ya Ewropa hat cîbicîkirin. Ew peymane gellek mafên pêwendîdar bi mafên civakî û abûrî, mafê karkirinê, mafê sendîkayên kedkarî, mafê parastina karkeran, mafê kedkarên werzî û kirêkarên mişextî (muhacir). Piraniya endamên Konseya Ewropa'yê ew peyman wajo kirine.

Siruşta pêwendiya navbera peymanên navnetewî yê mafên mirovan û peymanên herêmî çî yê! Bi giştî herdu peyman basa pirsên wek hev dikin, lê bi awayên cuda û bi peyvên cuda hatine perijandin. Peymanên nawçeyî li bin sîbera peymanên cîhanî bi awayên herêmî û di çarçoveya deverek cuxrafiyayî de tên cibicîkirin. Mebesta wan ne ewa ye ku hemberî hev rikeberiyê bikin, belkî armanc kemilandina hevûdu ye. Bi vî awayî armanca peymanên mafê mirov ên navnetewî û serbestiya hemû xelkê diviya bê fermînasîn. Ger kêşeyek hebe diviya standardên navnetewî hakim bin.

Konvansiyona mafê mirovan ya Ewropa'yê li hemû peymanên mafên mirov ên navnetewî xwedî mekanîzmek bihêztir e. Wê peymanê mafê gilîkirinê bo takekesan daye nasîn û takekes dikaribin gilî û sikalayên xwe derheq pirsgirêkên têkildar ji (Rêya Komîsyona Mafên Mirovan ya Ewropa'yê an jî Dadgeha Mafên Mirovan ya Ewropa'yê encam bidin). Herwisa her dewletek dikaribe gazindê li pêpeskirina naveroka peymanên konvansiyona Ewropa'yê li welatên din bike. Peymana mafê mirovan ya Amrîka jî tiştek wilo li xwe digire, lê bi awayekî hinek lawaztir. Di nav wan sê (3) peymanane de cîbicîbûna naveroka peymana mafê mirov û xelkê ya Afrîqa ji hemû peymanên din dûrtir e.

Dema berê welatên Ewropaya rojhelat ser bi tu peymanên herêmî yên parastina mafên mirovan nebûn. Lê piştî têkçûna komanîzmê gellek ji wan welatan Konvansîyona mafên mirovan ya Ewropa'yê wajo kirin an jî li piroseya wajokirina wê peymanê ji aliyê wan welatanve di rê de ye. Di welatên Asiya û Uqyanosa Aram de tu peymanên herêmî yên mafên mirovan nehatiye wajokirin. Ewa jî bi sebeba hebûna pirrçandiyek mezin e di wê herêmê de. Ewa tiştek tesadufî nîne ku herêma Asiya xwediyê tu rêxistinên navnetewî yên hevbeş wek Yekîtiya Ewropa'yê, Rêxistina Dewletên Amrîkî an Yekîtiya Afrîqa. Welat û neteweyên Asiya û Uqyanosa Aram gellek kêm tiştên hevbeş hene ji bo ku ser pêk bên.

# NÛJENPARÊZÎ (MODERNÎZM)



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Nûjenparêzî (modernîzm) ji peyva "modern" (peyveke fransî ) ku tê wateya nûjenî û hemdemiyê, hatiye dariştin. Çi erênî û çi jî neyinî dibe, liv û tevgerên ku bi jiyana rojane re li hev bin û ji hêla çandî ve nêzîkî modela nû bin, her gav wekî nûjen(modern) têne pejirandin.

Nûjenparêzî (modernîzm), di qirnê 19'mîn de wekî rêbazeke nûjen xwe daye der. Ev rêbaz li hemberî kevneşopiyên demê nûjentiya wêjeyî, hunerî û civakî ji xwe re kiriye /dike mebest. Modernîzm bi vê tenê jî nayê ser. Ji felsefeyê bigirin heta bazirganiyê veguherandina gellek tiştên din jî daye/dide ser xwe.

Çendî ku ev doman bingeha xwe ji qirnê 17'ê mîn û 18'mîn ku xwe dispêre şoreşa demokratîk jî, modernîzm (ango nûjenî) pêşî li Fransayê dest pê kiriye û ji hêla zanyar û ramanwerên ewropayî ve hatiye pejirandin û hemû welat û civakên dinê yên din jî kiriye bin hikm û bandora xwe.

Nûjenparêzî, di pêvajoyeke têkel de bi awayekî nûjen pêkanîna civakeke nûjen û pêşketî karakterîze dike. Ango modernîzm, her gav tiştên nû pêk tîne. Guherîn û veguherînên civakî mebest digire. Li gorî demê rêbazên nû û nûjen derpêş dike. Û nûjenbûnê (modernbûnê) esas digire.

Çar zerengiyên (çewaniyên) bingehîn ên nûjenbûnê hene:

1. **Nûjenbûna Ramyarî(siyasî):** Nûjenbûnek e ku alîkariya sazî û dezgehên ku avakirina partî, mafê dengdanê û parlamentoyê pêk tîne, dike.

2. **Nûjenbûna Çandî:** Ev nûjenîbûn, bi giranî bîrdoza ku xwe dispêre neteweparêziyê û ramangeriya sekulerîzmê(laîklik) diparêze. Û her gav jiyana dinyayî esas digire.

3. **Nûjenbûna Aborî:** Ev nûjenbûn jî, ji pîşesaziyê(endustriyê)wêdetir, bi zêdebûna veguhertinên aborî re têkildar dibe. Behreyên bazirganiyê û hêmanên wê yên aborî bi xwe re tîne.

4. **Nûjenbûna Civakî:** Zêdebûna mêjera xwendin û nivîsandinê û girêdayî wê, kêmbûna otorîteya(desthilatdariya) kevneşopiyên civakê û pêvajoya bajarvaniyê bi xwe re tîne.

Ev her çar hêman jî alîkariyê didin hevdû û hev û din xurtir dikin. Îcar hewce ye ku em hinekî li ser kan, mêjû û pêvajaya nûjeniyê bisekinin.

Bîrdoz an jî dozîneya (teoriya) nûjenbûnê, Piştî şerê cîhanê yê duyemîn ji hêla civaknasên Ewropa û Amerîkayê wekî modeleke gerdûnî hatiye parastin.

Wekî tê zanîn, felsefeya serdema navîn, lêgerîn û lêpirsîna rasteqîniya jiyanê dispêre xweda û xwedawendan. Di vê serdemê de hêza diyarker bawerî ye. Ango bawerî wekî bingeha her tiştî tê pejirandin. Aqil û hişmendî jî li gorî baweriyê dişêwin. Ev doman heta şoreşa Fransayê (1789) didome. Piştî vê şoreşê, ramanwerên serdema ronîdariyê mizgîniya nûjenbûnê didin û li dewsa baweriyê hiş (aqil) datînin hişmendiyê derdixin pêş. "Emil Dukheim", dibêje "Rasteqîniya rastîn civak bi xwe ye. Û ji bilî wê her tiştî kêm û nîvco ye".

Modernîzma ku di sedsala 17'mîn de derketiye holê, îro li tevê dinê şax vedaye. û jiyana civakî ya hemû welatên dinê hêdî hêdî dişêwîne. Çimkî ew, zanîn û hişmendiyê wekî kan û maka hemû cureyên desthilatdariyê dibîne. Nûjeniya ku guherîn û veguherînên civakî esas digire jî, dixwaze hemû mirovan di bin rêveberiya xwe de bogire û biesirîne. Ji aliyekî ve serwer û desthilatdarên dinê li ser navê modernîzmê, dil û mêjiyê mirovan dîl digirin û wan di bin desthilatdariya xwe de birêve dibin û ji aliyê din ve jî derfet û mercên nûjeniyê fêdeyê dide mirovên bindest û wan ji nezanî, xizanî bindestiyê reha dike. Ango nûjenî pêşî bêlayan e. Û bi mebesta wekhevî, aramî û ahengdariyê dest pê dike. Belê hin caran ji hêla stembar û desthilatdarên dinê ve wekî alava mêtingerî û dagirkeriyê tê bikaranîn. Gava ku nûjeniyeke bê layan hebûna pêkan bû ku hemû mirovên dinê ji vê atmosferê sûd werbigirin û li gorî merc û derfetên xwe medernîze(nûjen) bibin.

Nûjenî, çawa ku hikm û bandora xwe li ser hemû sazûmanên civakî dike, pergala perwerdehî û rêveberiyê jî dixe bin bandora xwe.

Belê hemû neyîniyên ku li ser navê modernîzmê tên kirin li aliyekî, dîsa jî serweriya aqil, hêza zanînê û bêlayanîbûna zanistê îro ro guherîn û geşedaniyên civakî li ser hemû mirovên dinê ferz dike.

## Raman

### Du gotinên binirx ên Şehîdê rêber Dr. Ebdulrehman Qasimlo

"Gelek azadiyê bixwaze, divê nirxa wê azadiyê jî bide, tu neteweyek bi bê zehmet û têkoşîn, bê bextkirina keç û xortên binirx ên xwe negehîştiye azadiyê. Gelek kurd jî û Partiya me jî ku pêşengê xebata gelê kurd e, mêjde ye dizanin ku azadî fidakarî û xwebextkirinê dixwaze. Karwanê Şehîdên me dirêj e, lê renge ji wê jî dirêjtir be.

Me mêjve ye biryar daye di roja Şehîdbûna Şehîdên xwe de negirîn. Mêjdem e me biryar girtiye ku tenê û tenê karek em dikarin bikin û li ber çav û bîra Şehîdên xwe şermzar nebin, ewa ye ku em rêya wan ber nedin, weke wan heta ser di wê rêyê de bimeşin, divêt em li tu dijwarî û astengekê netirsin û li tu dijwariyekê nevekişin.

Xebata me xebateke rewa ye. Xebat ji bo azadiya neteweyekê ye, xebat ji bo pêşeroja zarokên me û nifşên dinê ye. Heke em weke vî neslî erkê xwe bi başî bicî bîgehînin, em dikarin hêvîdar bibin ku nifşa pêşeroja me Şehîd tu nabe.

Her wiha eger nifşa berê yan neslên derbazbûyî bi başî erkê xwe bicî anîban, reng be ew nifşa me Şehîd nebûba".

**Dr. Ebdularehman Qasimlo**

---

"Jin nîva civakê pêk tînin. Jin her çiqas kêmtir di kar û barên civakê de beşdar bin, bi wî qasî kar û xebat û afirandin di civakê de kêmtir e û civak jî paşketî dimîne. Lewra asta beşdarbûna jinan di gişt warên jiyana civakî û siyasî de, nîşaneya asta pêşketina her civakekê ye. Eva di tevgereke şorevan de jî rast derdikeve. Anku herçiqas jin zêdetir beşdarê bizavên azadîxwazane bibin, bizav bi wî qasî pêşverûtir û serkevtîtir e.

Bona vê armancê divêt em di sê waran de xebatê bikin, yekem divêt em xebatê bikin bona nehêlana paşkevtîbûna giştî a welatê xwe ku sedema sereke a paremayîbûna jinan jî tê hesibandin.

**Duyem,** xebatê bikin li dijî hemû ew dab û edetên paremayî û kevn ku li dijî wekheviya jin û mêran disekine û bi çavek wekhev mêzeyî wan nake.

**Sêyem,** divêt em xebatê bikin li dijî terzên fikirîn û bîrkirina paşverûyane a mêran ku çewisandina jinan bi karek baş dizanin û herwiha divêt em xebatê bikin li dijî xwe bi kêmzanîn û bawerî bi xwe nebûna jinan ku zilm û zordariya civak û malbatê li dijî xwe bi diyardeyek asayî û berheq dizanin û li hember de teslîm dibin".

**Beşek ji peyama Dr. Qasimloyê nemir bi hilkevta 8'ê Adara 1987'an**

# Karîzmabûna Şehîd Dr. Qasimlo



**Elî Munezemî**

Pêş hindê ku em rasterast herin ser baskirin li karîzmabûna şehîd Dr. Qasimlo, pêdivî ye ku em bizanin karîzma tê çi wateyê û bi çi rêberekê re karîzma tê gotin.

Karîzma peyveke Yûnanî ye û bi wan kesan ra tê gotin ku xwediyê/a hindek taybetmendiyên şexsî û xasmanî ne ku tevî wan ji dayîk bûye û jêhatîbûneke fîlesofî dide wan ku bikarin bi awayên cur bi cur tevî xelkê têkiliyê bikin. Lê di zanistên rêberîkirinê de, karîzma beşek yan xisleteke cure rêberiyekê ye ku jêre dibêjin rêberîkirina transformasiyon (çalak). Ji taybetmendiyên girîng yên rêberîkirina transformasiyon, karîzma, armanc û hêvî ne. Ew yêka tê wê manayê ku rêber divê keseke/î karîzma be ku tevî hevalên xwe nêrînek hevpbeş heye û ew nêrîna ciyê hêviyê ye. Hevkar û hemû ew kesên ku li organîzasiyonê di bin rêberiyeke transformasiyon de kar dikin, kesên aktîv û pirrkar in. Rêber xwastikên xwe bi awayekê formole dike ku dibin xwastikên giştî û hemû kes di organîzasiyonê de ji bo realîzekirina wan xwastikan bi dil û can hewil dide.

Ji ber ku karîzma aliyek mezin û girîng yê rêberîkirina transformasiyon e, hewceye hindek bi hûrî em li ser rawestin û şirove bikin.

"Max Weber" dibêje ku rêberê karîzma xwediyê ciyeke bilind di nava hevkar û organîzasiyona xwe de ye û xwediyê taybetmendî û karaktêrê xasmanî û nimûneyî yê şexsî ye. Ji aliyekî din jî "Bass" (1990) du şêweyên rêberiya karîzma ji hev cuda dike: 1) rêberek ku dibe karîzma li ber xatirê pileya xwe ya bilind di organîzasiyonê de ku jêre dibêjin statuskarîzma û 2) rêberek ku ji ber xatirê taybetmendî û karaktêrê xwe yên xasmanî û şexsî dibe rêberek karîzma ku jêre dibêjin karîzmabûna şexsî.

"Trice" û "Beyer" (19869 pênc xal destnîşan kirine ku taybetmendiyên rêberên karîzma nîşan didin.

**1)** Keseke/î jêhatî û xwediyê taybetmendiyên xasmanî

**2)** Rêberên karîzma di dema pêşhatina rewşên aloz û qeyrana (kirîz) de serî hildidin

**3)** Rêya çareseriyê ku ji aliyê rêberê karîzma ve tê hilbijartin, çareseriyeke radîkal e

**4)** Tagir û alîgirên rêberê/a karîzma, wî/wê rêberî bawer in ku ew xwediyê lêzanînînek zaf û xasmanî ye

**5)** Ew taybetmendî û lêzanînane ji rêya ducar û çendcar dubarebûnê ve hatibin selimandin. Yanî wî/wê rêberî lêzanbûna xwe çend caran bi tagirên xwe re dabe diyarkirin.

Ew pênc xalane di wan çend salên dawiyê de hindek guhartin bi ser de hatine. Bo nimûne, ne hewce ye ku kirîz bê pêş heta rêberek karîzma serî hilde.



**Dr. Qasimlo rêberekî karîzma û xwedî exlaq bû. Dijî şer û evîndarê aştiyê bû. Dijî hindê bû ku meriv wek mohre bên bikaranîn. Rêz ji bo kerameta merivan hebû û ji bo azadî û çêkirina jiyaneke xweş ku layiqê merivan be, xebat dikir. Her di wê rêyê de jî canê xwe kire gorî**

Taybetmendiya sereke ji bo rêbereke/î karîzma ewa ye ku rêber bikare wêneyek baş û ciyê hêviyê li pêşeroja organîzasiyonê nîşan bide û ew yêka li ser bingeha hevtêgihîştineke giştî bête formolekirin, hem ji bo rêberiyê bi tevahî û hem jî ji bo endamên organîzasiyonê.

Tichy û Devanna (1986, 1990) heft xal destnîşan kirine li ser rêberên karîzma. Yanî rêberên karîzma xwediyê wan heft taybetmendiyane ne.

**1)** Kesên karîzma xwe bi guhartinxwaz didin nasandin. "Noel M. Tichy" û "Mary Anne Devanna" wê yekê wiha şirove dikin û dibêjin ku rêberek karîzma kesek şareza û profesiyonal e û xwediyê taybetmendiyên xasmanî ye û ji bo xelkê din dibe nimûneyek ji bo çavlêkirinê di organîzasiyona xwe de.

**2)** Ew kesên netirs in û li rîskkirinê di karê xwe de natirsin û dikarin li hember kesên din ku xwediyê rabihuriyeke dûr û dirêjin di organîzasiyonê de, rawestin.

**3)** Bawerî cem xelkê hene. Rêberek transformasiyon ku her wisa karîzma ye jî, xwediyê hêzeke zaf di organîzasiyonê de ye, lê ji wê hêzê bo qazancê xwe yê şexsî mifahê wernagre. Yanî qazancê şexsî ji bo xwe nake armanc, lê başîtî û pêşkevtina organîzasiyonê dixwaze.

**4)** Ew xwediyê nirx û taybetmendiyên zaf in û her kes dikare hindek ji wan nirxan ku li nirxên wî bi xwe jî nêzîk in, bas bike. Ew tişta tê wê manayê ku ew rêber xwediyê/a gellek nirxên xasmanî ye ku her kes li gora nirx û zanîna xwe wan nirx û taybetmendiyên wî rêberî fehm dike û tîne berbas.

**5)** Bo rêberên karîzma jiyan meydana fêrbûnê ye. Yanî meriv dikare li tecribên xwe ders û ibretê werbigre. Tichy û Devanna bi wê yekê gihîştin ku rêberên karîzma şaşiyên xwe ne bi xeletî, lê bi tecrîbe dihesibînin. Ew yeka jî dide xuyakirin

ku rêberên karîzma hez ji fêrbûnê dikin û xwe bi eqlê gişt û tewaw fêrbûyî nahesibînin. ji ber hindê, ji tecribên xwe û organîzasiyona xwe mifahê werdigrin ku kêmtir tûşê şaşiyan bin. Ew rêberên karîzma xwediyê hindek nirx û ramanên neguher in, lê hindek bîr û bawerên wan eger demeke dûr û dirêj ser re derbaz be, guhartin bi ser ve tê.

**6)** Rêberên zana û karîzma şiyana wê yekê hene ku xwe tevî zaf aliyên di nav organîzasiyonê de, lê ne hemûyan, rêk bixin ku bikarin bi tevahî kontirol li ser organîzasiyonê de hebin, ne tenê li ser beşeke organîzasiyonê.

**7)** Ew hêviyê ji bo pêşerojê diafirînin. Yanî ewa ku hêviya wan bo hindê ku di pêşerojê de organîzasiyon dê çi lê bêt û çi serkevtinekê dê bidest bixe. Ew rêber wisa bas ji wan hêviya dike û wêdetir dişîne ku beşek ji wê hêviyê cem endamên din yên organîzasiyonê û endamên rêberiyê saz dibe û hêviya wan zaftir dike bo wê hindê ku ew jî zaftir têkoşînê bikin bo gihîştin bi wê hêviyê.

Mixabin her wek pirr kesên şareza di zanistên rêberiyê de jî bas lê dikin, ewê zanista rêberîkirinê di warê exlaqî ve rêber li hev cuda nekirine. Bo nimûne keseke wek Nelson Mandella ku rêberek mezin û xwedî exlaq e, her mîna kesekî wek Hîtler rêberên karîzma têne hesibandin û ew bîrdoz û teoriya tu ferqekê nadane navbera wan.

Pêş hindê ku ez bixwazim li gora wan teoriyên ku bas lê hatî kirin, li ser karîzmabûna şehîd Dr. Qasimlo binivîsim, gotina hindek tiştan bi pêdivî dizanim. Ew xêzên ku tên nivîsîn, tiştên tewaw û kemilî ninin. Armanca min ewa bû ku ez derfetekê saz bikim bo wan kesên ku ji nêzîk ve Şehîd Dr. Qasimlo dîtine û li nêzîk ve şarezayî li ser şêweya rêberîkirina wî hene bêne qise û bikarin zêdetir agahdariyan li ser kar û xebata Doktor di piraktîkê de bidin me. Dijmin bi şehîdkirina kekê Duktor du cinayet kirin. Yek derheq bi mirovatiyê û standina canê merivan û ya din jî derheq me û izin neda ku em jî li nêzîk ve doktor bibînin û li ber destê wî bêne perwerdekirin.

Her wek hûn hemû baş dizanin, şehîd Dr. Qasimlo gellek caran PDKÎ li rewşên aloz û kirîzan anî der û bi kar û têkoşîna xwe PDKÎ kire xwediyê kerameteke zaf, hem di nav civaka Kurdistanê de û hem jî li derveyî Kurdistanê. Ew Dr. Qasimlo bû ku Partiya Demokrat ya Kurdistanê kire xwediyê serxwebûna siyasî û biryardanê. Ewî bi wî karê xwe guhartinên mezin li ser xebata PDKÎ û gelê kurd de anî. Her partî yan rêxistinek ku nekare serxwebûna xwe ya siyasî hebe, nikare xebata azadîxwaziyê bike. Ew kesên ku dixwazin xebata azadîxwaziyê bimeşînin, divê pêştir xwe azad bikin. Di fikr û ramanên xwe de azad bin û bi azadî biryar bidin. Doktor dibêje ku " em hazir in ku hevaletiyê bikne gorî ji bo parastina serxwebûna xwe, lê em tu caran serxwebûna xwe nakni fîdayê hevaletiyê". Gotinek wiha bi xwe derseke şoreşvaniyê ye.

Rêberê mezin û nemir, Dr. Qasimlo, di kar û xebata xwe de bo pêşveçûna şoreşê û bilindkirina asta

**Dr. Qasimlo her tim kesek bûye ku hêvî cem heval û pêşmergeyan afirandiye. Bi wî karê xwe bûye sebeb ku xebat ji bo azadiyê hertim bi germ û gurr dom bike.**

çawanîbûna kar, li rîskkirinê neditirsiya. Di demekê de ku baskirin li sosyalîzma demokratîk bi dîtina komunîstên derwêşsifet guneheke mezin û ne cihê lêbihorînê bû, Dr. Qasimlo bas li sosyalîzma demokratîk dikir. Bo bilindkirina asta kar û xebatê û perawêzxistina kesên tembel ku kar nedikirin, lîstê fîks dida kongirê û di hember kesên qazancperest di nav PDKÎ ê de disekinî û derfet nedida wan ku li pile û meqamê xwe ji bo qazancên şexsî û xasmanî mifahê werbigrin. Ewî bi xwe jî tu car li meqam û hêza xwe ji bo qazancên xwe yê xasmanî mifah wernegirt. Hemû xwastik û armanca wî, pêşxistina şoreşa mafxwaziya gelê kurd bû. Her ewan xisleta Dr. Qasimlo kiribûn ciyê bawerê di nav xelkê kurd û hemû azadîxwazan de û her ew yek bûn ku Dr. Qasimlo gihîştandibûne asta perestînê û me wek rizgarker û pêxemberekê mêzeyî wî dikir.

**Her partî yan rêxistinek ku nekare serxwebûna xwe ya siyasî hebe, nikare xebata azadîxwaziyê bike. Ew kesên ku dixwazin xebata azadîxwaziyê bimeşînin, divê pêştir xwe azad bikin. Di fikr û ramanên xwe de azad bin û bi azadî biryar bidin.**

Jêhatîbûn û zanabûna Dr. qasimlo bo hemû kesekê xuya bû. Her ew yeka bibû sedem ku kesên wek rêzdar Bernard Koşnêr wî bi mamostayê demokrasiyê û kesên wek Krîs Koçêra jî wî bi çavkaniya zanistê nav bibin. Her dost, heval û hogireke/î Dr. Qasimlo basa hindek taybetmendiyên wî dikin. Eger em bixwazin wî bi bas nas bikin, hewce ye ku em hemû wan basan kom bikin. Ji ber ku tu yek ji wan basan bi tinê tewaw nine, lê hemû tevî hev dikarin bibin tiştek û hêjayê pesna dr. Qasimloyê nemir be.

Doktor her tim kesek bûye ku hêvî cem heval û pêşmergeyan afirandiye. Bi wî karê xwe bûye sebeb ku xebat ji bo azadiyê hertim bi germ û gurr dom bike. Li gotinên giranbiha yên wî ku dibêje: "Encama wê xebata me dibe du tişt: hem canê şehîdên me şad dike û hem jî netewa me rizgar dike bo wê hindê ku me di pêşerojê de şehîd nebin".

Di dawiyê de hêjayî gotinê ye ku Dr. Qasimlo rêberekî karîzma û xwedî exlaq bû. Dijî şer û evîndarê aştiyê bû. Dijî hindê bû ku meriv wek mohre bên bikaranîn. Rêz ji bo kerameta merivan hebû û ji bo azadî û çêkirina jiyaneke xweş ku layiqê merivan be, xebat dikir. Her di wê rêyê de jî canê xwe kire gorî.

Di 20'mîn Salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û kek Ebdula Qadirîazer de, tevî rihê wan peymanê nû dikim û dê rêya wan heta gihîştin bi armancên wan yên pîroz her berdewam be.

**Jêder:**

**1) http://www.google.no/search?hl=no&q=transformasjonsledelse+%28semesteroppgave+i+HLED+1201%29&btnG=Google-s%C3%B8k&meta=&aq=f&oq=**

**2) Kjell Grønhaug, Odd Hellesøy og Geir Kaufmann (2003) ledelse i teori og praksis. Fagbokforlaget 2001(kapittel 2, 10 og 12**

**3) Li gotinên doktor, Deng**

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**



## Weşanxaneya Avesta Pirtûkek Din Li Ser Jiyan Û Kesayetiya Dr. Qasimlo Belav Kir




**Avesta-Agirî**

Weşanxaneya Avesta ku navendeke fermî li Turkiyê ye, di 20'emîn salvegera şehîdkirina Dr. Qasimlo de, pirtûkek li ser wî kesayetiyê navdar û akademîsyenê Kurd bi zimanê Turkî belav kir.

Ev pirtûk wergera pirtûka nivîskar û rojnamevana Venezuelayî "Carol Prunhubr" e ku li ser jiyan û kesayetiya Dr. Qasimlo hatiye nivîsîn û salekê berî niha bi zimanê Îspanyolî hatibû çap û belavkirin.

Avestayê berê jî du pirtûkên Dr. Qasimlo, "Kurdistan û Kurd" û "Çil sal xebat di rêya azadiyê de" çap kiribû.

## Çalakiyên Berfireh Li Derveyî Welat Bi Hilkevta 20'mîn Salvegera Şehîdkirina Dr. Qasimlo Û Hevalên Wî



Bi boneya bibîranîn û rêzgirtin ji bîstemîn salvegera Şehîdên Viyenê û herwiha mehkûmkirin û rûreşkirina terorîzma Komara Îslamî a Îranê, li Amerîka, Kanada, Ustiralya û çendîn welatên Ewropayê meş, xwenîşandan, civîn û seminar, konfernas û çalakiyên din ên cur bi cur hatin lidarxistin û endam û alîgirên PDKÎ û Kurdên parçeyên din û nûnerên partiyên siyasî, rêxistinên civakî û kesayetiyên cuda cuda û xelkê sivîl yê wan welatan bi berfirehî beşdarî wan çalakiyan bûn û di hemûyan de tekez li ser vekirina dosya terora Viyenê li dijî rêberên PDKÎ û gelê Kurd hate kirin û rêz ji xebat û têkoşîna aştîxwazane, demokratîk, neteweyî û kesayetiya zanistî û akademîk ya Dr. Qasimlo hate girtin û rola wî di xebata neteweyî a Kurd li Rojhilatê Kurdistanê wekî rêberê PDKÎ di rêya bidestxistina mafê netewî û azadiyê û cihgirkirina demokrasî û azadiyên demokratîk di Îranê de bilind nirxandin.



Nûçe û raporên wan çalakiyan li ser malpera me bixwînin…

## Dr. Pîltz: Îro Belgeyên Herî Girîng Nîşan Didin Ku Serok Komarê Niha Yê Îranê Di Terorkirina Dr. Qasimlo De Dest Hebûye



Dr. Pîter Pîltz, Endamê Parlemana Otrîşê di 20'mîn salvegera terora Vîyenê de di malpera xwe ya taybet de ev çend hevok belav kir:

Beriya 20 salan û di rojeke weke îro de, sê kurd li Viyenê hatin kuştin. Bi hevkariya Wezareta Dadê, Wezîrê Derve û Sekreterê yekem ye wezareta wî, du kes ji terorîstan karîn bê pirsgirêk û asteng Otrîşê cî bihêlin. Navê Wezîrê derve Alweys Mok û Sekreterê giştî yê Wezareta Derve jî Tomas Kilîstêl bû.

Îro belgeyên herî giring nîşan didin ku Serok Komarê niha yê Îranê di wê terorê de dest hebûye. Lê di demekê de ku basa ticaretê di holê de be, belgenameyan nirxeke wisa li cem Hikûmeta Otrîşê nine. Niha jî digel de be, çi hikûmet û çi dezgeha dadê ji vê babetê xwe diparêzin. Kuştina 3 kesan çawa bi ticareteke 3 milyonî tê nirxandin.

Bi vî awayî Otrîş niha paşde jî weke valahî dê bimîne, heta ku rejîmên weke Tehranê xwe ji wê valahiyê têxin nava Yekîtiya Ewropayê.

**Dr. Pîter Pîltz – 13'ê Tîrmeha 2009**